HERDEM RASTÎ

# BasNûçe

Rojname ya heftane ya nûçeyî - 2.5 TL

Hejmar: 67

24 - 30 Tebax 2015 basnews.com

Serdar Karatay

Nîgarsazê pêşengên kurd

R16



# Bi Barzanî re berdewam!





Qeyrana ku li ser guherîna destûrê ya di derbarê Serokatiya RHK de rû dabû, hefteya çûyî rê ber li dabeşbûna siyasî û pûçbûna Parlamentoyê vekiribû. Ji ber ku di parlamenê de biryarek nehate stendin û egeriya xeteriya bêserokmayîna RHK'ê peyda bû, Lijneya Bala ya Dadê di 18'ê Tebaxê de kom bû û biryara 2 salên din berdewamkirina serokatiya Barzanî da. R02 - 03

DYA û Brîtanya ji ber bi xetera ku ev qeyran dikare tekoşîna li dij DAIŞ'ê lawaz bike hesiyan, dest bi navbeynkariya aliyên siyasî kirin da ku qeyran bê çareserkirin. Şandeyên payebilind ên DYA û Brîtanya hefteya borî serdana Hewlêrê kirin û bi berpirsên hemû partiyan civîn pêk anîn. YNK û Goran di van civînan de soza çaresiyê dabin jî, piştî komcivînan helwestên cûda nîşan dan.

## Rojava: Serdemeke nû hêzên nû

Gengeşî û nezelelaliya ku bi têkçûna DAIŞ'ê ya ji hêla hêzen kurd ve berdewam e û her ku diçe ji balkêştir û tarîtir dibe. Wek tê zanîn bi qewirandina DAIŞ'ê ya ji herêmê re û bi taybetî ji rizgarkirina Girêspî Tirkiye ji nêz de têkildarî mijarê bibû û polîtîkaya xwe ya gelemperî ya Sûriye'yê guhertibû. Piştî qetliyama Pirsûsê ji cara yekem Tirkiye'yê hin êrîşên lewaz biribûn ser DAIŞ'ê û hat ragihandin ku derbasbûna DAIŞ'iyan a di ser sînorê Tirkiye'yê re ji wê pê ve pêkan nîn e. R04-5

## "Medyaya Başûr azad e"



Li Kurdistanê qeyranên siyasî û rikberiya nav hêz û partiyên siyasî yên nav perçeyan û yên heman perçeyan bandoreke mezin a neyênî li ser meşandina polîtîkayeke neteweyî dike. Di vê qeyran û aloziyê de bêguman rola çapemeniya kurd jî nayê piştguhkirin; Lewre tahakkuma aliyên siyasî ya li ser dezgehên ragihandinê li ser karê rojnamegeriyê û xebatên ragihandinê jî bandoreke mezin a neyênî dike. Serokê Sendîkaya Rojnamegerên Kurdistanê Azad Hemedemîn rewşa çapemenî û siyasetê nirxand. R08-9

## "Rojava vala dibe"

R06

## "Amadekariyên şer kiribûn"

R12

## "DAIŞ projeya têkbirina kurdan e"

R13



# Du salên din jî Barzanî

**Mustafa Turan**

**Bi nêzîkbûna 20'ê Tebaxê roja temambûna maweya serokatiya Serokê RHK'e Mesûd Barzanî re, xeteriya çaresernekirina qeyranê jî hêdî hêdî xwe da diyarkirin û partiyên siyasî dest bi komcivînan kirin û projeyan amade kirin.**

Di vê pêvajoya ku qada siyasî ya Başûrê Kurdistanê awirê xwe li ser peyrana Serokatiya Herêmê tûj kirî ye de, li herêmê kuştina serkirdeyê dûyem yê DAIŞ'ê Fadil Ahmed El Xeyalî, bi hinceta ku mûçeyên xwe nasitînin rûdana çalakiyên protestoyî yên milîşeyên Heşdî Şabî yên li dij Bexdayê, hişyarkirina Serkirdeyê şîayan Elî Sîstanî ya egeriya ku Bexda reformên pêwîst bi cih neyîne wê perçe bibe û li Tirkiyeyê pêşkêşkirina parlamentê ya tezkereya ku rê li ber şandina derveyê Tirkiyeyê ya leşker geşedanên ku derketin pêş in.

Ji ber rûdana qeyrana siyasî ya ku di xwe de xeteriya tekbirina fersenda serxwebûnê ku bi bedêlên mezin hatibû dabînkirin dihewîne, çavên hemû kurdan li Hewlêrê ye. Qeyrana ku li ser guherîna destûrê ya di derbarê  Serokatiya Rêveberiya Herêma Kurdistanê(RHK) de rû dabû, hefteya çûyî pêşî li dabeşbûna siyasî û pûçbûna Parlametê vekiribû. Ji ber ku di parlamenê de biryarek nehate stendin û egeriya xeteriya bêserokmayîna RHK'ê peyda bû, Lijneya Bala ya Dadê di 18'ê Tebaxê de kom bû û biryara 2 salên din berdewamkirina serokatiya Mesûd Barzanî da.

DYA û Brîtanya ji ber bi xeteriya ku ev qeyran dikare tekoşîna li dij DAIŞ'ê lawaz bike hisiyan,  dest bi navbeynkariya aliyên siyasî kirin da ku qeyran bê çareserkirin. Şandeyên payebilind ên DYA û Brîtanya hefteya çûyî serdana Hewlêrê kirin û bi berpirsên hemû partiyan re yek bi yek û di dawiyê de jî bi hemûyan re komcivînan pêk anîn. Jêderên herêmî ragihandin ku YNK û Goran di van komcivînan de soz dane şandeyan, lê belê piştî komcivînan helwestên cûda nîşan dane. Hate ragihandin ku di civîna 5 partiyên siyasî yên RHK'ê ya 19'ê Tebaxê de Şandeya Amerîkî, berdewamiya serokatiya Mesud Barzanî pêşniyaz kiriye; Lê belê ji ber ku nexwestine weke destwerdana navxweyî ya Herêma Kurdistanê dikin bê xuyakirin, helwesteke fermî nîşan nedane.

Qeyran, di 22'ê Hezîranê de ji alî YNK, Tevgera Goran û bi piştgiriya Yekgirtûyî Îslamî û Komeleyî Îslamî, pêşkêşkirina ji parlamenê re ya pêşnûmayasaya ku erka hilbijartina Serokê Herêmê radestî parlamenê dike û desthilata wî kêm dike, destpê kir. Wê demê, ji ber ku Balyozê Îranê yê Hewlêrê jî ji rûniştina pesendkirina vê pêşnûmayasayê re hatibû vexwendin, PDK'ê vê yekê wek hewldana Îranê danas kiribû û daniştinê boykot kiribû.

### Projeyên çareserkirina qeyrane

Bi nêzîkbûna 20'ê Tebaxê roja temambûna maweya serokatiya Serokê RHK'e Mesûd Barzanî re, xeteriya çaresernekirina qeyranê jî hêdî hêdî xwe da diyarkirin û partiyên siyasî dest bi komcivînan kirin û projeyan amade kirin. Piştî ku roja 20'ê Tebaxê hat, Tevgera Goran pêşniyaza bi şerta piştî 2 salan Serokê Herêmê ji alî parlamenê ve bê hilbijartin û desthilata serok bê kêmkirin, 2 salên din dirêjkirina serokatiya Barzanî kir. Her wiha Cîgirê Sekreterê Giştî yê YNK'ê Berhem Salih jî projeyeke ku li gel pêşniyaza Tevgera Goran, di maweya 2 salan de di bin banê Wezareta Pêşmerge de yekdestkirina hêzên Pêşmerge û damezirandina Lijneya Serokatiyê ku wê di derbarê frotina neftê û geşedanên aborî de daneyan berhev bike û van daneyan wek raport ji raya giştî re ragihîne, pêşkêş kir. Lê belê ev herdû pêşniyaz jî nehatin cîbicîkirin.

### "Barzanî li ser erka xwe dimîne"

Ji ber ku di encama nîqaş û komcivînên partiyên siyasî de encamek nehate bidestxistin, piştî serdana Endamê Polîtburoya PDK'ê û Cîgirê Serokê Parlamenta Kurdistanê Cafer Emînkî ya Wezareta Dadê, Lijneya Şuraya Bala ya Wezaretê bi peyameke nivîskî ragihand ku Şûrayê biryar daye ku heta hilbijartinên nû yên serokatiyê, wê Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî  bi desthilata xwe ya niha li ser erka xwe bimîne. Şûrayê di metna biryara xwe de destnîşan kir ku ev biryar di heman demê de ji bo partiyên siyasî pêşniyazek e; Lê belê ev biryar di heman demê de biryarek destûrî ye jî. Piştî vê biryarê partiyên siyasî ji bo pirsgirêk di parlamenê de  bê çareserkirin hewl dan ku parlamentê kom bikin, lê belê ji ber ku PDK'ê banga boykotkirinê kir, hejmara 56 ya ku ji bo kombûna parlamentê pêwîst e ne civîya, daniştina parlamentê nehate kirin.

### Meclisa Şûra: Biryar yasayî ye

Meclîsa Şûra ya Bala ya Herêma Kurdistanê ku di sala 2007'an de di çarçoveya yasaya hejmar 13 de, di bin banê Wezareta Dadê de hate damezirandin û di sala 2008'an de bi yasaya hejmar 14 rêbazên wê yên xebatê ji alî Parlamenê ve hatin destnîşankirin di peyama xwe de her wiha destnîşan kir ku biryara ku Şûrayê wergirtiye yasayî û tekez e. Meclîsa Şûra ji ber ku meclîseke yasayî ye û erka wê ya di mijarên wiha de biryaran bistîne heye, ji Lijneya Serokatiyê, Lijneya Giştî û Leqên Dadgehên Îdarî pêk tê.

### 'Çareserî nêzîk e'

Di ve pêvajoya ku ji bo çareserkirina qeyranê gellek civînên 5 qolî têne lidarxistin de Serokê Dîwana Serokatiya RHK'ê Fûad Huseyn daxuyand ku aliyên siyasî nêzîkî biryareke hevbeş in û çareserî nêzîk e.

Piştî vê bûyerê Parlamenê Tevgera Goran Berzo Macîd ragihand ku RHK'ê niha bi valahiyeke yasayî re rû bi rû ye, pêwîstî bi çareserkirina vê pirsgirêkê kir û got: "Ger pirsgirêk neyê çareserkirin pêwîste Serokê Parlamentê bi wekaletî erka serokatiya Herêmê têxe deste xwe"

Bi hatina 20'ê Tebaxê re, ji ber ku diyar bû ku rewş ber bi aloziyê ve diçe, 5 partiyên siyasî yên ku di parlamenê de komên wan hene, li Hewlerê dest bi rêze civînên 5 qolî kirin. Partiyan di 21'ê Tebaxê de piştî 3 civinên 5 qolî, her çiqas nêzîktirî hev bûbin jî, biryara stratejiyeke hevbeş û mayinde wernegirtin. Piştî civîna dawî Serokê Dîwana Serokatiya RHK'ê Fûad Huseyn daxuyaniyek da û da zanîn ku partî ji destpêkê bêtir nêzîkî hev bûne, di 23'ê Tebaxê de wê partî vê carê li Silêmanî li hev bicivin û ji vê civîna Silêmanî hêviya wan ew e ku partî stratejiyeke





hevbeş diyar bikin û li ser wê biryar bidin.

Di van civînên ku Endamên Lijneya Yasadan a Parlamenê jî beşdar bûn de hate ragihandin ku 5 partiyan biryar stendine ku projeyeke hevbeş bê amadekirin. Her wiha hate gotin ku ger bê amadekirin wê proje ji alî Lijneya Yasadan ve bê nivîsandin.

### 'Bê Barzanî nabe'

Di pêvajoya piştî Hezîrana 2014'an ku bi êrîşkirina DAIŞ'ê ya Kurdistanê destpê kir de, her çiqas piştî Enfal û Hebçeyê kurd, rastî mezintirîn komkujiyan hatibin jî, bi saya şerê bêhempa yê li dij DAIŞ'ê hate kirin, kurdan ji dinyayê re dane nîşandan ku ew tekane hêz in ku dikarin DAIŞ'ê têk bibin, bi vî awayî di raya civak û siyasetên navneteweyî de piştgiriyeke mezin wergirtin û vê rewşê rê da ku kurd dest bi hewldanên dîplomatîk ên serkeftî bikin û di encama vê dîplomasiyê de jî hêzên mezin ên dinyayê ji bo piştgiriya xwe ji kurdan re ragihînin ketin rêzê.

Di vê pêvajoya ku li Rojhilata navîn geşedanên mezin pêk tên de, derdorên ku têgihîştine ger ev qeyrana çêkirî ya li dij Barzaniyê ku bi mebesta di nav şerê mezin ê li Rojhilata navîn rû daye de ji bo kurdan fersendên mezin bi dest bixe vîneke polayî nîşan dide bi ser bikeve, wê li Kurdistanê şkestên mezin rû bidin, radigihînin ku ew ê serê xwe li hember vê helwestê netewînin. Ji ber vê yekê berdewamiya serokatiya Barzanî ji prosedorên yasayî zêdetir, xwedî grîngiyek pir mezin e; Lewre RHK'ê defakto be jî raketiya asta dewletan û tê payîn ku di siberoja nêzîk de wê ev rewşa defakto rengekî fermî werbigire û serxwebûna Kurdistanê bê ragihandin. Çavdêrên siyasî jî diyar dikin ku bêyî Barzanî wê kurd nikaribin vê pêvajoyê serkeftî derbas bikin û destnîşan dikin ku siberoja nêzîk a Kurdistanê bêyî Barzanî nabe.

### "Barzanî bê alternatîf e"

Ji alî din ve analîstên polîtîk ên emerîkî jî di nirxandinên xwe de diyar dikin ku ji bo RHK'ê alternatîfê Barzanî tune ne. Pisporê Tirkiye û Kurdistanê yê Navenda Woodrow Wilsonê, Henri Barkey ragihand ku ji bo Serokatiya RHK'ê ji bilî Barzanî tu navek din nayê hişê wî. Barkey destnîşan kir ku wî ji bo  Serok Barzanî erka xwe berdewam bike vê nêrînê ji berê xwe ve nehaniye ziman û got: "Ger rewşa niha baş bê xwendin tê dîtin ku Barzanî bê alternatîf e û Amerîka jî di vê baweriyê de ye" Barkey, di Beşa Têkiliyên Navneteweyî û Zanista Polîtîk a Zanîngeha Lehigh de hînkar e û bi pirtûka bi navê "Pirsgirêka kurd a Tirkiyeyê" ya ku wî û Şefê Îstgeha Rojhilata Navîn a CIA'yê Graham Fuller bi hev re nivîsandibûn tê nasîn.

Ji alî din ve Berdevkê Wezareta Derve ya DYA John Kirby, di daxuyaniya xwe ya rûtîn a 20'ê Tebaxê de diyar kir ku ew geşedanên aborî û leşkerî yên li Iraqêe grîng dinirxînin û da zanîn ku geşedanên rû didin ger di derbarê şerê li dij DAIŞ'ê de be, ew geşedan ji bo Hêzên Hevpeymaniya Navneteweyî grîngtir tê nirxandin. Kirby got: "Ji ber vê yekê meseleya Serokatiya Herêma Kurdistanê ji bo me pir grîng e"

### Parlamenê Yekgirtû: Em xapandin

Her ku qeyran aloztir dibe, detayên ku bûne sedemê rûdana qeyranê jî roj bi roj aşkere dibin. Piştî ku di 22'ê Hezîranê de bi teşwîqa Îranê YNK û Goran, Yekgirtû û Kameleyê jî dan dû xwe û bi destxistina dengan xwestin derba parlamentî pêk bînin, Dindar Doskî ku di nav Yekgirtû de xwedî grîngiyeke mezin e, li dij helwesta partiya xwe bertek nîşan da û jê veqetiya. Piştî Doskî, parlamenê Yekgirtû Sahrab Rêkanî jî bertek nîşan da.

Sahrab Rêkanî da zanîn ku beriya 22'ê Hezîranê roja ku pêşnûmayasa ji parlamentê re hate pêşkêşkirin, ew bi nûnerên van partiyan re li gel Serokê Dîwana Serokatiyê civiyane û biryar hatiye dayîn ku pêşkêşkirina pêşnûmayasayê bê taloqkirin, lê belê ev biryar pêk nehatiye. Rêkanî got: "Em hatin xapandin, lewre Serokê Parlamentê jî di wê civînê de bû û pêwîste biryara civînê ji raya giştî re aşkere bike. Hin parlamenan li dij vê biryarê îmze berhev kirin, lê Serokê parlamenê van îmzeyan nedîtî hesiband. Van partiyan ji bo hilbijêrên xwe ji dest bernedin helwesteke wiha nîşan dan û me xapandin"

Gellek parlamenên Yekgirtû'ya ku di destpêkê de bi YNK û Goran re tevgeriya, lê dûra şkestekê xwar, ji helwesta partiya xwe ya ku li dij Barzanî piştgiriya YNK û Goran kirin fikaran dikin.

### 'Wê Kurdistan tûşî şerê navxweyî bibûya'

Endamê Polîtburoya Yekgirtû Xazî Seîd jî Serokê Parlamentê Yûsif Mihemed rexne kir û got: "Ger pêşî lê nehata girtin wê Kurdistan tûşî şerê navxweyî bibûya" Xazî Seîd bi daxuyaniyekê daniştina awarta ya 19'ê Tebaxê ku bi beşdariya 3 partiyan pêk hat nirxand. Seîd, got: "Ger ev daniştin pêk hatibûya wê Kurdistan tûşî şerê navxweyî bibûya. Helwesta van partiyan helwesteke xeternak bû, lê Serokê Parlamenê bi biryara komkirina parlamentê xeletiyeke stratejîk kir. Ger ku di wê daniştinê de di yasaya serokatiyê de guherîn pêk hatibûya wê şerekî navxwe rû bida" Xazî Seîd da zanîn ku Yekgirtû wek partî biryar girtibû ku ew ê beşdarî vê daniştinê nebe. Seîd destnîşan kir ku wan vê biryarê bi serê xwe stendiye û berovajiyê angaştan, tu partiyeke din gefan li wan nexwariye,

### Hawramî: Barzanî  2 salên din li ser kar e

Li gel ku ji tu berpirsekî di derbarê çareserbûna qeyranê de daxuyaniyek nehatibe dayîn jî, Fermandarê Hêzên Zêrevanî Kamran Hawramî ji BasNûçe'yê re ragihand ku partiyên siyasî li ser bi heman desthilatê, 2 salên din berdewamiya serokatiya Barzanî li hev kirine, lê belê li ser şêweyê hilbijartina piştî 2 salên din heta niha biryarek nehatiye stendin û civînên ku niha têne lidarxistin ji bo şêwêyê hilbijartina seroke 2 salên din in. Hawramî anî ziman ku tu kesek ku dikaribe cihê Barzanî bigire tune ye û ev nişane ye ku wê Barzanî dom bike û got: "Xalên 15. û 16. ên destûrê ji bo destnîşankirina berdewamiya serokatiyê Şûraya Bala erkdar dike.

### Osman: Pergala heyî partiperest e

Di derbarê mijarê de Parlamenê Lista Kurd a Parmamena Iraqê yê Berê Dr. Mehmûd Osman jî bi ser Basnûçe'yê  nirxandinan kir. Osman, anî ziman ku di pêvajoya qeyranê de kesê ku herî hestiyar tevgeriyaye û çareseriyê spartiye partiyên siyasî Mesûd Barzanî bûye, lê belê ji ber helwestên neyênî yên partiyan ev qeyran gihîştiye asteke xeternak û dom kir: "Birêz Barzanî çareserkirina qeyranê sparte partiyan. Lê belê partî bi awayekî ku ji bo pirsgirêkên xwe yên navxweyî çareser bikin nêzîkî qeyranê bûn û ji ber vê yeke weyran mezintir bû. Sedemê qeyranê pergala rêvebirinê ye. Her çiqas di metnên destûrê de bê gotin ku pergala RHK'ê parlamentî ye jî ev ne rast e; Lewre pergala me pergaleke partîperest e. Paye, hêza leşkeri û gellek dezgeh di nav partiyan de hatiye parvekirin. Di rewşeke wiha de pir asan e ku qeyranên siyasî rû bidin. Ji bo çareseriyeke mayînde divê destûra nû berovajiyê vê rewşê zemîneke demokratîk bike armanc û hêz û aliyên siyasî jî vê yekê hezim bikin. Tenê bi vî awayî dikare pêşî li qeyranan bê girtin"

### Ahmed: Pirsgirêk di pêknehanîna yasa de ye

Berpirsê Ragihandina YNK'ê û Şêwirmendê Berê yê Berhem Salih, Tuwana Ahmed jî di hevpeyvina li gel BasNûçeyê de balê kêşa ser metnên destûrê û anî ziman ku pirsgirêk ne di yasayan de, di pêkanîna yasayan de ye. Ahmed got: "Di çarçoveya destûrê de Seroke RHK'ê Mesud Barzanî dû serdemên 5 salan û carekê jî bi dirêjkirina maweya postê serokatiyê, bi giştî 12 salan serokatiyê kir. Ji bilî vê destûr rê nade ku serokatiya Barzanî berdewam bike. Jixwe ne YNK û ne jî Goran dijberiya serokatiya Barzanî nakin, tenê rêzikên destûrê destnîşan dikin û ji ber vê yekê hewl didin ku prosedorên yasayî bêne bi cih anîn. PDK jî dixwaze ku serokatiya Birêz Barzanî bi heman desthilatê 2 salên din jî dom bike. Bi raya min PDK jî amade ye ku kêmkirina desthilata Serokê Herêmê binirxîne, lê li ser 2 salên din jî berdewamkirina serokatiya Barzanî bi israr e"

### Duyem serkirdeyê DAIŞ'ê hate kuştin

DAIŞ'a ku bi êrîşên hewayî şiyana wê ya tevgerînê lawaz bûbû derbeke mezin xwar. Berdevkê Lijneya Parastinê ya Neteweyî ya DYA Ned Price daxuyaniyeke nivîskî belavkir û ragihand ku di 18'ê Tebaxê de, Duyem grîngtirîn serkirdeyê DAIŞ'ê Fadil Ahmed El-Xeyalî ku bi nasnava Hecî Mûtaz dihane nasîn û rêvebirê DAIŞ'ê yê ku karên wê yên medyayê birêve dibir Ebû Ebdûlah, li derdora Mûsilê dema bi maşînekê geştê dikirin, di encama êrîşa frokeya bê mirov a mûşekî de hatine kuştin. Price di daxuyaniyê da zanîn ku El-Xeyalî Cîgirê Serokê DAIŞ'ê Ebûbekir Bexdadî yê herî bi qidem e û ji bilî karê darayî yê DAIŞ'ê, her wiha arastekarê endam, çek û teqemenî yê nav Iraq û Sûriye ye. Hecî Mûtaz'ê ku di dema Seddam de Gerînendeyê Sîxuriya Iraqê bû, di dagirkirina Mûsilê de jî roleke mezin hilgirtibû.

### Carter: Kurd dikarin herêmên derî axa xwe jî kontrol bikin

Wezîrê Parastinê yê DYA Ashton Carter, di daxuyaniya xwe ya li Washingtonê de da zanîn ku kurd, hem li Iraqê û hem li Sûriyeyê hêzeke mezin in û bi vê hêza xwe dikarin ji bilî axa xwe, herêmên din jî kontrol bikin û biparêzin. Carter, di daxuyaniyê de ji ber serkeftinên bi dest xistine hêzên kurd pesindar nirxand û got: "Ev serkeftinên wan vê yekê şanî me daye ku kurd, hem li Iraqê û hem li Sûriyeyê bi şerê li dij DAIŞ'ê dikarin hem axa xwe kontrol bikin û biparêzin û hem jî herêmên din. Ev şiyana hêzên kurd heye." Daxuyaniya Carter, bû cihê gumana ku 'DYA dixwaze Pêşmerge beşdarî operasyona rizgarkirina Mûsilê bike'



## "Em bi şerê li dij DAIŞ'ê serfiraz in"

**Li gel qeyrana siyasî jî xebatên dîplomasiyê dom dikin. Rawêjkarê Asayîşa Giştî yê RHK'ê Mesrûr Barzanî di hevdîtina li gel Cîgirê Nûnerê Taybet ê Tekoşîna dij-DAIŞ'ê yê DYA û Balyoz Brett McGurk de bi McGurk re rewşa şerê li dij DAIŞ'ê û geşedanên herêmê de gotûbêj kir. Di hevdîtina ku Balyozê Hewlêrê Matias Metman jî amadebû de, li ser xurtkirina hevkariya welatên li dij DAIŞ'ê û bêtir piştgirîdayîna RHK'ê de danûstendinên ramanî pêk hatin. Mesrûr Barzanî ji bo şerê li dij DAIŞ'ê pêdiviyên çek û teqemenî yên Pêşmerge destnîşan kir û got: "Ji ber tekoşîna bêhempa ya gelê kurd a ku li dij DAIŞ'ê ne tenê parastina xwe her wiha parastina gelên din ên Kurdistanê jî dike em pir serfiraz in" McGurk jî diyar kir ku RHK'ê yek ji hevkarên herî grîng ên DYA'yê ye û wê alîkariya wan a ji bo Herêma Kurdistanê dom bike. McGurk, di derbarê qeyrana heyî ya RHK'ê de jî diyar kir ku DYA dixwaze ev qeyran bi diyalogê û tafilê bê çareserkirin.**

# Rojava:
# Serdemeke nû, hêzên nû

Mehmet Salih Batırhan

Gengeşî û nezelelaliya ku bi têkçûna DAIŞ'ê ya ji hêla hêzen kurd ve berdewam e û her ku diçe jî balkêştir û tarîtir dibe. Wek tê zanîn bi qewirandina DAIŞ'ê ya ji herêmê re û bi taybetî jî rizgarkirina Girêspî Tirkiye ji nêz de têkildarî mijarê bibû û polîtîkaya xwe ya gelemperî ya Sûriye'yê guhertibû. Piştî qetliyama Pirsûsê jî cara yekem Tirkiye'yê hin êrîşên lewaz biribûn ser DAIŞ'ê û hat ragihandin ku derbasbûna DAIŞ'iyan a di ser sînorê Tirkiye'yê re ji wê pê ve pêkan nîn e. Tirkiye guhertina polîtîkaya xwe bi esasî li ser herêma tampon ava kir û bi şertê ku YPG tevlî vê nebe û ew ji aliyê hevpeymana navnetewî ve wek şirîk nayê qebûlkirin beşdarî êrîşên ser DAIŞ'ê dibe û ew şert jî nezelaliya heyî tarîtir dike.



Tirkiye ku ji destpêka şerê Sûriye'yê ve piştgiriya Arteşa Azard a Suriye'yê dikir û ew perwerde dikir, niha jî heman kiryarê bo çekdarên tirkmen û hin komên îslamî dike. Herwiha li ser vê hewlestê nakokiyên kûr di navbera hêzên navnetewî û Tirkiye'yê de didomin. Biryara vekişandina patrîotên Elmanya û DYA'yê jî wek peyameke têkildarî mijarê tê nirxandin. Di vê navberê de peyamên ku ji aliyê rayedarên PYD'ê ve tên dayîn jî balkêş in. Herçend ku heta niha wan di gotinên xwe yên di derheqê Tirkiye'yê de zimanekî nerm bikartianîn jî di demên dawîn de daxuyaniyên balkêş tên ragihandin. Nûnerê PYD'ê di axaftinên xwe yên demên dawîn de diyar dikin ku heger Tirkiye li herêmê bi hêzên tundirew re herêmeke tampon avabikin ewê vê yekê wek sedema şer bihesibînin û çawa ku bi DAIŞ'ê şer dikin ewê bi Tirkiye'yê re jî şer bikin.

Dijberiya Tirkiye'yê ya li hember PKK'ê ji hêla raya giştî ya cihanê ve ji mêj ve tê zanîn. Her wiha niha jî li Tirkiye'yê û Bakurê Kurdistanê operasyonên "terorê" dîsa hatine destpêkirin û ew dijberiya li hember PKK'ê gihiştiye lûtkeyê. Dewleta Tirkiye'yê ya ku ji sala 2013'an heta niha bi Serokê PKK'ê Abdullah Öcalan re danûstendinan dike agirbesta di navbera xwe û PKK'ê de bi dawî kir û li hember PKK'ê dest bi operasyonan kir. Li hêla din helwesta Tirkiye'yê ya li hember DAIŞ'a ku li hemû cihanê weke "dezgeha komkujiyê" tê zanîn jî bûye cihê nîqaşan. Her wiha li Rojhilata Navîn yekane hêza li hember DAIŞ'ê operasyonên serkeftî pêk tînîn kurd in û operasyon û êrîşên Tirkiye'yê yên li hemberî kurdan di rojeve cihanê de ye. Her wiha şervanên YPG'ê yên li Rojava li hember DAIŞ'ê serkeftinên mezin tomar kirin ji hêla Tirkiye'yê ve hatin binçavkirin û car caran rayedarên Tirkiye'yê gefan li wan dixwin. Heman hêza kurd li Rojava bi piştgiriya DYA'yê û koalîsyona navdewletî li hember DAIŞ'ê serkeftinên mezin tomar kirin. Bi piştgiriya koalîsyona navdewletî di şerê Kobanê de hêzên kurd DAIŞ ji dorûbera Kobanê derxistin û li qada şer cih li DAIŞ'ê teng kirin. Serkeftin û destkeftinên kurdan bûye cihê nerazîbûna Tirkiye'yê.

Dewleta Tirkiye ya ku ji cirîda DAIŞ'ê ya li Semsûr, Riha û gelek bajarên din ên Kurdistanê neacizbû û li hemberî komkujiya Reyhanli'yê bêdeng bû piştî rûdanên nû yên li Rojhilata Navîn Balafirxaneya Leşkerî ya Încîrlîkê ji DYA'yê re vekir û li hember DAIŞ'ê dest bi "operasyonekê" kir.

Li hêla din piştî tiffaqa Tirkiye û hevpeymanên wê yên bi welatên rojavayî re Tirkiye li hember PKK'ê dest bi operasyonên leşkerî kir û beregehên wê bombardûman kir. Gefa rayedarên Tirkiye ya li PYD'ê û li YPG'ê jî di rojevê de cihê xwe digre. Amaje bi wê yekê tê kirin ku armanca Tirkiye'yê ya nû ne Esed e lê belê kurd in. Bi taybetî bi destpêka krîza li Surîye'yê re bi hinceta "xetereye Esed" Tirkiye ji NATO'yê mûçekên patrîot xwestibûn û ew li Tirkiye hatibûn bicihkirin. Li hêla din ew mûçekên NATO'yê ewê di meha pêşiya me de ji Tirkiye'yê bêne derxistin û ev yek jî ji hêla tehlîlgeran ve weke peyameke NATO'yê ya li Tirkiye'yê hat nirxandin.

"Şerê wekîltî" yê li Sûriye'yê jî bi awayekî dijwar berdewam dike. Li hêlekê piştgiriya Tirkiye ya li DAIŞ'ê û li El Nûsra ya bi ser El Kaîde'yê ve tê şîrovekirin, li hêla din jî amaje bi wê yekê tê kirin ku wekaleta li Tirkiye Ahrûrûl Şamê wergirtiye. Serkirdeyên hin komên tirkmen ên di nav Ahrarûl Şamê de beriya demekê hatibûn Tirkiye û endamên wan koman ji hêla MÎT û Fermandariya Leşkerî ya Tirkiye'yê ve hatibûn perwerdekirin. Li hêla din çend dozgerên Tirki li ser hin wesaîtên çek û teqmenî yên li sînorê Tirkiye û Sûriye'yê bûn lêpirsin dan despêkirin û ji raya giştî re hat eşkerekirin ku ew hin xurek û çekin û Tirkiye dişîne ji tirkmenan re. Dewleta Îranê ya ku piştî rêkeftina atomî bi DYA'yê re durist kir jî li hember helwestên Tirkiye'yê yên li Sûriye û Rojava radiweste. Rayedarên Îranê li hember polîtîkaya Tirkiye ya avakirina "herêma tampon" derdikevin û ewê destûra wê yekê jî nedin. Her wiha rayedarên Îranê amaje bi wê yekê jî dikin ku yekane hêza li hember DAIŞ'ê radiweste YPG ye û ew ji piştgiriya PYD'ê û YPG'ê re amade nin. Di gel bedelên hatine dayîn hêza siyasî ya kurd jî li gor hevsengiya hêzên Rojhilata Navîn tevdigere û destkeftiyên kurdan ên li Rojhilata Navîn jî dixe metirsiyê.

## PENTAGON: Dest bi operasyonan bike!

Her wiha Wezîrê Berevaniyê yê DYA'yê Ashton Carter, amaje bi wê yekê kir ku hewldanên Tirkiye'yê yên li hember DAIŞ'ê lawaz in û divê Tirkiye tiştên zêdetir bike. Ashton di konferansa rojnamevaniyê de li Pentagonê da zanîn ku ew ji helewesta Tirkiye ya vekirina balafirxaneyan a ji bo balafirên hevpeymaniyê kêfxweş in lê divê Tirkiye li hember DAIŞ'ê operasyonan bike û hewldanên wê yên niha têr nakin. Ashton Carter li ser helwesta Tirkiye ya li hember DAIŞ'ê û derbasbûna hin endamên wê ku ji ser sînorên Tirkiye re derbas dibin jî wiha got; "Vebûna wan balafirxaneyan em kêfxweş kirin. Divê Tirkiye ewlehiya sînorên xwe jî xurttir bike. Em ji wan hêvî dikin ku di vê meseleyê de vî karî bêtir bikin." Tirkiye beriya bi mehekê balafirên xwe ji hevpeymaniya li hember DAIŞ'ê şer dike re vekiribû. Piştî wê biryara 6 balafirên F-16 û 270 leşkerên DYA'yê hatibûn Balafrxaneya Leşkerî ya Încîrlîkê

## DYA û Almanya mûçekên patrîot vedikşînin

DYA û Elmanya'yê eşkere kirin ku piştî bidawîbûna dema mûçekên patrîot ewê wan ji Tirkiye'yê vekişînin. Di sala 2013'an de di sînorê Bakûr û Rojavayê Kurdistanê de mûçekên DYA û Elmanya'yê hatibûn bicihkirin. Ji aliyê herdu welatan ve hat ragihandin ku ewê meha pêşiya me mûçekên xwe yên patrîot vekşînin.

Di sala 2013'an de du bataryayên DYA'yê li Dîlokê du bataryayên Elmanya'yê li Mereşê û du bataryayên Hollanda'yê jî li Edene'yê hatibûn bicihkirin. Mûçekên patrîot hem ji bo parastina Tirkiyê û hem jî ji bo sînorê NATO'yê yê başûr li Tirkiye hatibûn bicihkirin. Li gor malpera fermî ya Fermandariya Leşkerî ya Elmanya'yê ewê "ji ber bidawîbûna xetereya li Sûriye'yê" di gel mûçekan 250 leşkerên êalman jî dêvegerin welatê xwe.

## Mûçekên patrîot çima tên vekişandin?

DYA' û Elmanyê'yê ji ber xetereyên ji Sûriye'yê bên ser Tirkiye mûçekên patrîot li hin bajarên Bakurê Kurdistanê bicihkiribûn. DYA û Elmanya biryara wê yekê wergirtin ku ewê bataryayên mûçekên xwe jî vekşînin. Herçend Wezareta Karên Derve ya Tirkiye'yê amaje bi wê yekê bike ku çûna mûçekên patrîot ewê di warê ewlehiyê de kêmasiyê pêk neyîne jî tehlîlgerên siyasî amaje bi wê yekê dikin ku DYA û Elmanya'yê bi vekişandina mûçekan peyam dane Tirkiye'yê.



Piştî meha cotmehê ewê bataryayên DYA û yên li Dîlokê û di çilêyê de jî ewê bataryayên Elmanya'yê yên li Mereşê ji herêmê bên vekişandin. Li hêla din jî her çend rayedarên Tirkiye'yê eşkere biikin ku "Eger YPG û PYD derbasî nav herêma tampon bibe ewê li hember wan jî operasyon bên pêkanîn" jî rayedarên DYA'yê bereksî rayedarên Tirkiye daxuyaniyan didin û didin zanîn ku ewê piştgiriya wan a li PYD'ê û YPG'ê dê berdewma bike. Rawêjkarê Wezareta Derve yê DYA'yê John Kirby û cihgîre wî Mark Toner heta niha di derbarê "herêma tampon" a ku Tirkiye hewl dide ava bike de tu daxuyanî nedane.

## 'Tirkiye ji piştevaniya li PYD'ê û YPG'ê aciz e'

Tehlîlgerê Navenda Lêkolînên Stratejîk ê Rojhlata Navîn (ORSAM) Dr. Oytun Orhan li ser rûdanên dawî, peywendiya DYA'yê û Tirkiye, vekişîna mûçekên patrîotan ji BasNûçe'yê re axivî. Orhan eşkere kir ku DYA'yê daxwaz ji Tirkiye dikir ku di şerê li hember DAIŞ'ê de cih bigre û Balafirxaneya Leşkerî ya Încîrlîkê veke. Her wiha Orhan amaje bi wê yekê jî kir ku polîtîkaya Tirkiye'yê ya Sûriye piştî serkeftinên kurdan ên li Girêspî guheriye û Tirkiye ji piştevaniya PYD û YPG'ê aciz e. Di berdewamiya axaftina xwe de Orhan ragihand ku Tirkiye di wê baweriyê de ye ku ewê bi operasyonên koalîsyonê DAIŞ têk neçe û divê stratejiyeke din bê bikaranîn.

Di dirêjahiya axaftina xwe de Orhan bal kişand ser nakokiyên rayedarên DYA û Tirkiye'yê jî û eşkere kir ku ji ber daxwaza Tirkiye'yê ya "herêma tampon" nakokî di daxuyaniyên rayedarên herdu welatan de hene. Her wiha Orhan amaje bi wê yekê jî kir ku Tirkiye PYD û YPG'ê weke rêxistineke terorî dibîne lê belê DYA'yê bereksî Tirkiyê wan weke hêzêkê dibîne û piştevaniya wan dike û Tirkiye ji piştevaniya wan nerazîye. Li hêla din Orhan vekişîna mûçekan jî bi bîr xist û eşkere kir ku Tirkiye û DYA hevpeyman in û vekişîna mûçekan ne ji ber rageşiya herdu welata ye.

## Krîza Ssûriyê û hêzên nû

Li hêla din welatên weke Îran, Siûdî Arabîstan, DYA û Rûsya, ji bo çereserkirina krîza û çarenûsa Sûriye'yê di nava hewldanên dîplomatîk de ne.

Hevdîtîna sêqolî ya Wezîrên Derve yên DYA, Rûsya, Siûdî Erebîstanê, serdanên Wezîrê Derve yê Sûriye ya ji bo Ûmman û Tehranê, civîna li Riyadê ya ji çapemeniyê re nehat eşkerekirin a di navbera rayedarên Sûriye û îstîhbarata Siûdî de, li hêla din serdana gelek rayedarên Sûriye ya li gel Moskova'yê û her wiha serdana Wezîrê Derve yê Siûdî ya Moskovayê, plana çareseriya Sûriye ya Wezîrê Derve yê Îranê ku eşkere kir ku ewê planê bibe NY'yê û ewê ji gelek welatên Afrîka û Rojhilata Navîn re wê pilanê eşkere bike didin zanîn ku krîza Sûriye di rojeva cihanê de ye. Herwiha hat zanîn ku Siûdî û Qeter hewl didin ku dîsa balyozgerên xwe yên Şamê bişînin Şamê.

## Eniya Tirkiye ya nû "Ahrarûl Şam"

Li hêla din rojnameya Times a ku li Brîtanya'yê belav dibe da zanîn ku Enqere piştevaniya dijberên Sûriye rêxistina Ahrarûl Şamê dike û çek û teqemeniyê dide wan. Li gor rojnameyê piştî gengeşiyên "herêma tampon" Tirkiye dest bi çekdarkirina wan kiriye. Her wiha fermandarên eniyan jî hatina çekan piştrats dikin. Ahrarûl Şam ji 5 rêxistinên cuda weke bereyekê hatiye damezirandin. Lîva'ya Tehvîd, Bereye Helebê, Artêşa Mûcahîdan, Lîvaya Nûredîn Zengî, Hereketa Festakîm Kema Umirte û Bereya Geşedanê di sala 2014'an de li hev kom bibûn û Ahrarûl Şam ava kiribûn. Her wiha hat zanîn ku di derdora 400 – 1000 endamên Ahrarûl Şamê hene.

## Gelo PYD ji Girêspî vedikşe?

Piştî şikestxwarina DAIŞ'ê ya li Girêspî konrola navçeyê ket destê PYD'ê. Her wiha hat payîn ku piştî tiffaqa PYD'ê û Artêşa Azad ewê PYD ji Girêspî derkeve û bajêr ji Artêşa Azad re bihêle. Li hêla din li ser baniyê avahiyên gumrikê ala Artêşa Azad hat daliqandin.

Girêspiî ku bi ser Reqayê ve ye û di sala 2012'an de ketibû destê Artêşa Azad û dû re bi êrîşan DAIŞ'ê ew herêm ji destê Artêşa Azad derxist û kontrola herêmê xist destê xwe. Di meha hezîrana borî de Burkan el Ferad û YPG'ê li hember DAIŞ'ê operasyon dan destpêkirin û DAIŞ ji herêmê derxistin. Bi operasyonên hêzên kurd re DAIŞ ji herêmê vekşiya û berê yekîneyên xwe da Reqa'yê. Wezîrê Karê Derve yê Kobanê Îbrahîm Kurdo li ser rûdanên dawî yên Rojavayê Kurdistanê ji BasNûçe'ê re axivî. Kurdo daketina ala PYD'ê ya li Girêspî derewand. Kurdo amaje bi wê yekê kir ku Girêspî ji hêla xelkê Girêspî tê birêvebirin û xelkê wê meclîsen xwe avakirine û rêveberiyên xwe ew dikin. Her wiha Kurdo bal kişand ser azadbûna Girêspî jî û da zanîn ku bajar ji hêla Burkan el Feradê ya bi ser Artêşa Azad û YPG'ê ve hatibû rizgar kirin û li Girêspî jî xweseriya demokratîk heye.



DYA' û Elmanyê'yê ji ber xetereyên ji Sûriye'yê bên ser Tirkiye mûçekên patrîot li hin bajarên Bakurê Kurdistanê bicihkiribûn. DYA û Elmanya biryara wê yekê wergirtin ku ewê bataryayên mûçekên xwe jî vekşînin.

## 'Tirkiye krîzê mezintir dike'

Di berdewamiya axaftina xwe de Kurdo bal kişand ser polîtîkayên Tirkiye yên li ser Sûriye û Rojavayê Kurdistanê û da zanîn ku hewcedariya Tirkiye bi wê yekê heye ku bi wan re hevpeymanbe lê belê gefan li wan dixwe û wan weke xetere dibîne. Her wiha Kurdo amaje bi wê yekê jî kir ku 800-900 kîlometre sînorê Tirkiye ji hêla wan ve tê parastin û ne karê baqilaneye ku Tirkiye çek û teqemeniyê bide hin komên tûndrew. Kurdo li ser piştevaniya Tirkiye'yê ya li gel Ahrarrûl Şamê jî rawestiya û wiha berdewam kir; "Divê Tirkiye dev ji van helwestan berde. Li Rojava û li Sûriye yekane hêzak ku li hember DAIŞ'ê şer dike kurd in û Artêşa Azad e. Tirkiye piştevaniya hêzên din dike. Tirkiye bi vê piştevaniyê krîzê mezintir dike."

## 'PYD ne di bin kontrola Îranê de ye'

Her wiha Kurdo amaje bi wê yekê jî kir ku ewê piştevaniya DYA û hevpeymaniyê ya li gel PYD'ê û YPG'ê berdewam bike û hevpeymanî YPG'ê weke perçeyekî hêza hevpeymaniyê ya bejeyî dihesîbîne û ew serkeftinên YPG'ê bilind dinirxînîn. Her wiha Kurdo daxuyand ku hemû hêzên li Sûriye'yê li hember "herêma tampon" a Tirkiye nerazîbûnan nîşan didin û ew qebûl nakin ku Tirkiye li herêmê bibe xwedî hêz. Di berdewamiya axaftina xwe de Kurdo li ser peywendiyên PYD' û Îranê jî rawestiya û daxuyaniyên Îranê yên li ser piştevaniya PYD'ê bilind nirxand û eşkere kir ku wan di şerê li hember DAIŞ'ê de ji bo piştevaniyê bang li hemû kesî kiriye û Îranê bersiva wan da ye û ev jî kiryareke di cih de ye. Kurdo bal kişand ser medyaya Tirkiye jî û da zanîn ku medyaya Tirkiye amaje bi wê yekê dike ku PYD di bin kontola Îranê de ye û ew ne rast e û medya Tirkiye dijberiya kurdan dike.






Feysel Yûsiv:

# Rojavayê Kurdistanê vala dibe

**Serdar Lolan**

Serokê berê yê ENKS'ê Feysel Yûsif, balê kişand ser koçberiya ji Rojava û got xelk ji ber rewşa xirab ya siyasî û jiyanî koç dike û Rojavayê Kurdistanê ber bi valabûnê ve diçe.

Encûmena Niştimaniya Kurd (ENKS) ya piştî krîza siyasî li Sûriyê di sala 2012'da n de ji aliyê 11 partiyên siyasî yên kurd hat avakirin li ser karê xwe berdewam e. ENKS hem li Rojavayê Kurdistanê û hem jî li gelek welatên Ewrûpa nûnertiyên xwe vekirine û ji bo çarenûsa xelkên Rojava polîtîkayê dimeşîne. Siyasetmedar Feysel Yûsif ji BasNûçe'yê re axifî û li ser polîtîkayên ENKS'ê rawestiya.

Yûsif eşkere kir ku ENKS ji bo berevaniya mafê xelkê kurd ê li Rojava hatiye damezirandin û ew ê di karê xwe de berdewam be. Her wiha Feysel Yûsif li ser polîtîkayên PYD'ê û valabûna Rojavayê Kurdistanê jî rawestiya û îddia kir ku PYD ne hevkarê kurdan e hevkarê Esed e.

**Peymanên Hewlêr û Dohokê karîger nebûn**

Di berdewamiya axaftina xwe jî de Yûsif amaje bi wê yekê jî kir ku qeyrana Sûriyê rêyeke dîrokî li ber kurdên Rojava vekir ku bigihêjin mafên xwe û çarenûsa xwe diyar bikin lê belê partiyên siyasî xelk ji hev veqetandine û her partiyeke siyasî berê xelkê kurd daye cihekî û rewşê aloztir kirine. Her wiha Yûsif li ser danûstendin û rêkeftinên di navbera ENKS û TEV-DEM'ê jî de rawestiya û daxuyand ku TEV-DEM tu carî ji hevpariyê re amade nebû û TEV-DEM û PYD rê li ber yekgirtinê digirtin. Yûsif li ser danûstendinên di navbera TEVDEM û ENKS'ê de wiha got: "Me gelek cara hewla wê yekê da ku em bibin yek û em bi hevre Rojavayê Kurdistanê bi hev re birêvebibin. Di Peymanên Hewlêrê jî de û di ya Duhokê jî de li ser sê xalan me li hev kir. Lê belê Biraderên me li biryarên peymanê xwedî derneketin û ji bilî xwe tu kes li Rojavayê Kurdistanê qebûl nekirin."

**'Mesûd Barzanî li Rojava xwedî derket'**

Yûsif ragihand ku Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî gelek hewl daye ku alîkariya partiyên siyasî yên li Rojavayê Kurdistanê bike û hemahengiyê di navbera wan de saz bike, lê belê hewldanên wî biryarên vala hatin derxistin. Yûsif amaje bi wê yekê jî kir ku Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî tu cûdahî nexistiya navbera xelkê Rojavayê Kurdistanê û Başûrê Kurdistanê û her tim ji bo çarenûsa xelkê Rojavayê Kurdistanê di nava hewldanê deye û di encama dîplomasiya wî ya xurt koalîsyona navdewletî alîkariya hêzên kurd ê li Rojavayê Kurdistanê dikin û her wiha Pêşmerge jî derbasî Kobanê bûn û li hember DAIŞ'ê serkeftinên mezin bidest xistin. Her wiha Yûsif li ser peymanên Hewlêr-Duhokê yên bi serperiştiya Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî di navbera ENKS'ê û TEV-DEM'ê de duristbûn jî rawestiya û wiha got: "Civînên li Hewlêr û Duhokê bi serperiştiya



Serokê Herêmê Mesûd Barzanî pêk hatin. Baweriya wî bi tifaqê heye. Her tim digot 'Eger hûn tifaqa xwe durist nekin hûnê nikaribin siyaseteke xurt îradeyeke xurt nîşan bidin.' Hemû hewldanên wî neahtin fêmkirin û biraderên me yên TEV-DEM'ê ji ser maseya li hevkirine radibûn."

**'Pêşmergeyên Rojavayê Kurdistanê amaden e'**

Feysel Yûsif li ser perwerdeya Pêşmergeyên Rojava û şerê wan ê li hember DAIŞ'ê û egera derbasbûna wan a ji bo Rojavayê Kurdistanê jî rawestiya û ragihand ku Pêşmergeyên Rojavayê Kurdistanê ji hêla Pêşmergeyên Zerevanî yên Başûrê Kurdistanê hatine perwerdekirin û hejmara zêdetirî 7 hezara ye. Her wiha Feysel Yûsif da zanîn ku Pêşmergeyên Rojava li Başûrê Kurdistanê di sengerên şer de ne û li hember DAIŞ'ê şer dikin. Siyasetmedar Feysel Yûsif li ser egera derbasûna wan a ji bo Rojava jî rawestiya û wiha got: "Pêşmergeyên Rojava ji bo parastina xelkê Rojava ameden e. Niha jî ew li sengerên şer in û şerê DAIŞ'ê dikin. Ji bo derbasbûna wan gelek danûstendin pêk hatin. Lê belê birayên PYD'ê ji bo derbasbûna wan razî nîne. Serokê Herêma Kurdistanê jî eşkere dike ku nabe beyî hemahengiyê Pêşmergeyên Rojava derbasî welat bibin."

> "Pêşmergeyên Rojavayê Kurdistanê ji bo parastina xelkê Rojava amede ne. Niha jî ew li sengerên şer in û şerê DAIŞ'ê dikin. Ji bo derbasbûna wan gelek danûstendin pêk hatin. Lê belê birayên PYD'ê ji bo derbasbûna wan razî nîn in.

**Çalakî û dîplomasiya li Ewrûpa**

Li hêla din li ENKS'ê li Ewrûpayê û li gelek deverên din ê cihanê çalakî li dar xistin û bi nûnerên gelek saziyên sivîl û partiyên siyasî jî re danûstendin pêk anîn. Her wiha amaje bi wê yekê jî tê kirin ku civînên Cenevreyê yên ji bo çaresekirina krîza Sûriyê jî ew ê dîsa dest pê bikin. Yûsif li ser dîplomasiya wan a li Ewrûpayê destpêkirina civînên ENKS'ê rawestiya û da zanîn ku ENKS di nava Encûmena Muhalifên Sûriyê de jî cih digre û ew eşkere dike û heta rejima Esed hebe ew ê krîza Sûriyê berdewam bike û çareseriya qeyranê bi têkçûna rejima Esed re mumkûn e. Feysel Yûsif li ser dîplomasiya wan a Ewrûpa û xwepêşandan û tezahûratên wan ê li Ewrûpayê jî rawestiya û ragihand ku mebesta wan ew e ku kiryarên Esed û PYD'ê ji raya giştî ya cihanê re û raya giştî ya kurd re eşkere bikin wan dest bi çalakiyên xwepêşandanan li dar xistine.

**'PYD ne bi kurdan re bi Esed re hemaheng e'**

Li hêla din êrîşên asayîşa PYD yên ser ENKS'ê jî berdewam dikin. Heta niha gelek endamên ENKS'ê ji hêla asayişê ve hatine girtin. Her wiha gelek caran jî avahiyên ENKS'ê tên gulebaran kirin û gef li endamên ENKS'ê tên xwarin. Yûsif li ser fişara asayîşa PYD'ê ya li ser ENKS'ê jî rawestiya û amaje bi wê yekê kir ku PYD'ê ji bilî xwe tu partiyên siyasî yên kurd qebûl nake û destûrê nade ku ew polîtîkayan birêve bibin. Feysel Yûsif ragihand ku PYD'ê bi asûrî û erebên li herêmê re rêkeftin saz kiriye û dema ku mesele tê ser rêkeftin û yekgirtina kurdan ji wê direve û ji xwe re tu şirîkan qebûl nake û siyaseteke ne dûrist bi rêve dibe. Feysel Yûsif hemaheniya PYD'ya bi rejima Esed û komên çekdar jî bi tûndî rexne kir û da zanîn ku PYD hevkariyê bi komên tarî re dike û siberoja xelkê Rojavayê Kurdistanê dixe bin metirsiyê.

**'Rojavayê Kurdistanê vala dibe'**

Her wiha ji ber krîza 2011'an a li Sûriyê û êrîşên ser komên çekdar ê ser Rojavayê Kurdistanê bu hokara wê yekê ku bi hezara xelkê Rojavayê Kurdistanê cih û warên xwe bihêlin û terkîwelat bibin. Ji destpêka krîzê heta niha bi hezaran xelkê Rojavayê Kurdistanê li Başûr û Bakurê Kurdistanê di kampên penaberan de dimînin. Hin xelk jî ji bo jiyaneke nû berê xwe didin Ewrûpayê bi rêyên ne legal derbasî Ewrûpayê dibin û di wan rêyan de perîşan dibin. Feysel Yûsif li ser valabûna Rojavayê Kurdistanê û koçberiya xelkê Rojava jî rawestiya û eşkere kir ku xelk ji ber polîtîkayên PYD'ê ji Rojavayê Kurdistanê derdikeve. Her wiha Feysel Yûsif da zanîn ku PYD "leşkeriya neçarî" û bacê li ser xelkê Rojavayê Kurdistanê ferz dike û xelkê di kampan de venagerin û yê li Rojavayê Kurdistanê jî ne ji Rojava derdikevin û li ser wan rêyan perîşan dibin.







PDKÎ 70 salî ye

# Wê PDKÎ gel biparêze

**Hêmîn Dildar**

Partiya Demokrata Kurdistana Îranê (PDKÎ) ya ku li ser hîma Jiyanewey Komeley Kurdistan ava bû 70 salî ye. PDKÎ kevintirîn partiya Rojhilat e ku Komara Kurdistanê, Mehabad ava kiribû. PDKÎ di dirêjahiya demê de li ber zulma Îranê rawestiya û doza parastina mafê kurdên Rojhilatê Kurdistanê berz kir. Wek tê zanîn rêber û serokên PDKÎ'yê ji aliyê rejîma Îranê ve hatine sêdarekirin û kuştin. Qazî Mihemed hatiye darvekirin, Dr. Qasimlû û Dr. Şerefkendî jî hatine kuştin. PDKÎ'ya ku nêzîkî 25 sala ye dev ji karê çekdarî berdaye û niha li Başûrê Kurdistanê li bajarê Koyê beregehên xwe yên şer daniye demeke dirêje di nava tevgerekê de ye û dîsa Pêşmergeyên xwe dişine ser çiyayan û li hember binpêkirinên mafê kurdan û fişara kurdan a li Îranê radiweste.

PDKÎ'ya ku ji kelepûra siyasî ya Qazî Mihemed û Abdurrahman Qasimlo tê niha jî geşedanên dawî yên Rojhilata Navîn û rêkeftina Îranê ya bi welatên Ewropa re ji nêz ve dişopîne û ji bo parastin û demokrasiya xelkê Rojhilat polîtîkayê saz dike. Her wiha di vê çerçoveyê de demeke dirêj e nûner û siyasetmedarên PDKÎ'yê bi gelek welatan re di nava dîplomasiyê de ne û piştî zêdebûna fişara Îranê ya li ser kurdên Rojhilat Pêşmergeyên PDKÎ'yê jî derbasî sengerên şer bûn û bingehên xwe yên şer danîn.

**"Wê PDKÎ parastina kurdan bidomîne"**

Nûnerê Deftera Siyasî yê PDKÎ'yê Hewlêrê Mihemed Salih Qadirî, ji BasNûçe'ê re axivî û li ser karname û polîtîkaya PDKÎ'yê rawestiya. Mihemed Salih Qadirî li ser çûna Pêşmergeyên PDKÎ'yê yên ser çiyayan û sînorê Rojhilat û Başûr rawestiya û daxuyand ku Pêşmergeyên wan ji bo parastina xelkê Rojhilat li ser sînor in û eger êrîş were ser wan ewê parastina xelkê Rojhilatê Kurdistanê bikin û bi tûndî parastina rewa ya xelkê Rojhilat bikin. Her wiha di berdewamiya axaftina xwe de Qadirî eşkere kir ku wan weke PDKÎ 70 saliya damezirandina partiyê pîroz kirine û eşkere kirine ku ewê di parastina mafê kurdên Rojhilatê Kurdistanê de berdewam bin.

**"Li İran a İslamî demokrasî ne mumkûn e"**

Di berdewamiya axaftina xwe de Qadirî rewşa siyasî ya Rojhilata Navîn jî bi bîr xist û daxuyand ku divê ew ji bo parastina xelkê Kurdistanê amadebin lewre li Rojhilat komên tûndrew ên îslamî êrîşî xelkê kurd dikin. Qadirî rewşa siyasî ya hemû Kurdistanê jî bi bîr xist û ragihand ku divê hêzên kurd li hember êrîşên komên çekdar ên tûndrew di parastina rewa ya xelkê kurd de di amadebaşiyê de bin û bi rêxistinbûyîna xwe xurttir bikin. Her wiha Qadirî li ser geşedanên dawî yên li Îranê jî rawestiya û ragihand ku bi rêkekftina Îran û welatên P5+1 jî re ewê ambargoya li ser Îranê ji holê rabe û ew Îran êdî hesabê tu welatan neke û bêhtir fişarê bîne ser xelkê Îranê. Li hela din Qadirî li ser serdana Parêzgeha Kurdistanê ya ji hela Serokkomarê Îranê ya Hesenê Rûhanî jî rawestiya û wiha berdewam kir; "Pêkhatina demokrasiyê û bi cihbûna wê ya li vê Îranê zehmet e. Beriya Hesenê Rûhanî Ehmedînecad û Muhammed Hatemî jî ketin nava hewldanan lê bele li Îranê demokrasî bi desten kesên hatine hilbijartin naye. Hemû tişt di destê Ayetullah Hamaney de ye."

**"Kiryarên rejimê mezhebî ne"**

Her wiha Qadirî daxuyand ku Hamaney meşrûyeta xwe ji olê distîne û ew hemû tiştî li ser siyasetmedaran ferz dike lewre jî li gora wan divê hemû tişt li gor biryarên Hamaney bin û bêyî Hamaney tu tişt nayê kirin. Qadirî li hela din amaje bi wê yekê jî kir ku mezhepersetiya Îranê rê li ber pêşketina mafê mirovan digre û rejima Îranê ji hemû xelkê Îranê dixwaze ku ew bibin şîe mezheb. Ji ber fişara olî ya Îranê bi sedan kurdên Ehlî Heq û sune mezheb û her wiha belûcên Sûne û Henefî mezheb ji hela rejima Îranê ve tên girtin. Herî dawî ji ber xwendina nimêja cejna Meha Remezanê gelek melleyên kurd ji hela hêzên asayîşa Îranê vê hatin binçavkirin.

**"Pêngav ji bo hilbijartinê ye"**

Mihemed Salih Qadirî amaje bi wê yeke jî kir ku ew pêngavên ku niha Îran li hember kurdan daye destpêkirin ne pêngavên demokrasiyê ne û ew Îran ji hêza kurdan a Rojhilata Navîn ditirse û naxwaze kurd li Rojhilata Navîn bibin xwedî otorite. Her wiha Qadirî eşkere kir ku di destura bingehîn a Îranê de rê li ber perwerdeya zimanên din jî heye lê belê heta niha Îranê gaveke bi vî rengî neavêtiyê û rê li ber perwerdeya kurdî girtiye. Qadirî li ser vebûna beşa kurdî ya li Zankoya Kurdistanê jî rawestiya û wiha domand; "Di destûra bingehîn a Îranê de mafê parastina çand û zimanan heye. Rêya wê yeke heye ji bilî farisî bi zimanên din jî perwerde hebe. Lê bele Îran destûra vê yeke nade. Tiştê ku dixwaze li Parêzgeha Kurdistanê jî bike xapandine. Hilbijartinên serokkomariyê nêzîk dibin dixwazin xêlkê kurd bixapînin." Kurdên Rojhilatê Kurdistanê gelek caran beşdarî hilbijartinên Îranê nabin û hilbijartinan boykot dikin. Ji ber boykota sala 2006'an de bi dehan kurd li Rojhilat ji hêla hêzên emnî yên Îranê hatin binçavkirin û qetilkirin.

**"Ji bo yekgirtinê danûstendin"**

Di sala sala 2004'an de ji ber hin nerîn û boçûnên cüda hin endamên PDKÎ'yê ji partiye veqetiyan û Hizba Demokrata Kurdistanê (HDK) damezirandin. Bi destpêkirina êrîşên DAIŞ'ê yên li ser Kurdistanê hemû partiyên siyasî yên Kurdistanê nêzîkî hevdû bûn û di parastina Kurdistanê de ketin nava hemahengiyê. Her wiha her du partiyên ji binemaliya PDK'a Îranê tên jî nêzîkî hevdû bûn û ew jî di nava danûstendinan dene da ku hemaheng bin û bi kongreyê di bin navê yek partiyê de li hev bikin. Qadirî li ser danûstendinên di navbara wan û HDK'ê jî de rawestiya û eşkere kir ku ew xwe amade dikin ku kongreyekê durist bikin û di bin banê yek partiyê de li hev kom bibin. Qadirî eşkere jî kir ku xelkê Rojhilat ji perçebûna wan aciz e û dixwazin ew yekgirtinê saz bikin û di binê yek banî de li hev kom bibin. Qadirî daxwaziyên xelkê kurd yên li ser mijarê jî wiha eşkere kir: "Xelkê dixawzin hemû demokrat bi hevre bin ne du partî bin."

## Azad Hemedemîn:

# Li Başûr rojnamegerî bi yasayan tê parastin

Tuwanê Dodkî

Sendîkaya Rojnamegerên Kurdistan ku ji sala 1998'an de li Başûrê Kurdistanê hatiye damezirandin, li gel hemû astengiyan jî hewl dide ku pîşeya rojnamegeriyê ji bin nîrê desthilat û hêzên siyasî rizgar bike û derfetan peyda bike da ku rojnamegeriya kurd bi şêweyekî demokratîk û azad karê xwe bimeşîne. Serokê Sendîkaya Rojnamegerên Kurdistanê li Başûrê Kurdistanê Azad Mihemedemîn pirsên me wiha bersivand.

**Li Kurdistanê qeyranên siyasî û rikberiya nav hêz û partiyên siyasî yên nav perçeyan û yên heman perçeyan bandoreke mezin a neyênî li ser meşandina polîtîkayeke neteweyî dike. Di vê qeyran û aloziyê de bêguman rola çapemeniya kurd jî nayê piştguhkirin; Lewre tahakkuma aliyên siyasî ya li ser dezgehên ragihandinê li ser karê rojnamegeriyê û xebatên ragihandinê jî bandoreke mezin a neyênî dike. Ji bo em vê babetê bikolin û rewşa rojnamegeriya kurd li ber çavan raxînin me bi Serokê Sendîkaya Rojnamegerên Kurdistanê Azad Hemedemîn re hevpeyvîneke çêkir.**

**'Sendîka endama IFJ'ê ye'**

Sendîkaya Rojnamegerên Kurdistanê çawa hate damezirandin û wez sendîka hun çi xebatan dikin?

Sendîkaya me di sala 1998'an de, di çarçoveya Yasaya Sendîkaya Rojnamegeran a destûra Iraqê ya kevn a dema Seddam hate damezirandin. Ev yasa tanzîmkirina Sendîkaya Rojnamegerên Kurdistanê jî pêk dihanî. Destûra Iraqê ya kevn ji bo geşedandina pîşeya rojnamegeriyê gellek derfet pêkan dikir. Yanî ji bo parastin, birêxistinbûn û pêşketina rojnamegeran gellek yasa hebûn. Sendîkaya me ji sala 2001'an ve endamê Federasyona Rojnamegerên Navneteweyî(IFJ) ye. Ev endamtî beriya rûxandina rejîma baasê hate kirin. Di vî warî de sendîkaya me yekem sendîkaya Iraqê ye ku bûye endamê IFJ'ê. Heta niha em beşdarî 4 konferansên navneteweyî yên IFJ'ê bûne

Rêveberiya Sendîkaya Rojnamevanên Kurdistan ji gellek lijneyan pêk tê; Lijneya Encumena Bala ya Sendîkayê ku navenda wê li Hewlêrê ye, Lijneya Rojnamegerên Jin, Lijneya Rojnamegerên Werzîşê û Lijneya Parastina Rojnamegeran. Her wiha Lijneya lêkolînê ya Sendîkayê jî heye û ev lijne ji 6 mehan carekê raportên 6 mehane yên ku daneyên binpêkirina mafê rojnamegeran bi kurdî, erebî û îngilîzî amade dike û ji parlament, serokatiya herêmê, partiyên siyasî û ji hemû raya giştî re aşkere dike heye. Hemû lijne xwedî ofisên xwe ne û heta radeyekê serbixwe ne.

**Sendîkaya Rojnamegerên Kurdistanê berdewamiya sendîkayeke Iraqî bû yan ji damezirandina xwe ve wek Sendîkaya Rojnamegerên Kurdistanê damezirî?**

Na, berdewamiya sendîkayeke Iraqî nebû, ji destpêkê ve wek sendîkaya Rojnamegerên Kurdistanê hate damezirandin. Lê belê ev nayê wê wateyê ku ji bilî kurdan tu kesên din nikarin bibin endam. Hemû rojnamegerên ku li Herêma Kurdistanê karê xwe dimeşîne dikare bibe endamê me. Çi kurd, çi ereb, tirkmen û mesîhî; Tu sînorek regezî û nijadî tune ye. Endamên me yên cihû yên Îsraîlî jî hene.

**Ji bo azadkirin û serbixweyiya rojnameger û dezgehên ragihandinê çi xebatên we hene?**

Yasaya tanzîmkirina rojnamegeriyê ya Destûra Rêveberiya Herêma Kurdistanê (RHK) projeya sendîkaya me ye. Me vê yasayê amade kir û pêşkêşî parlamentê kir û paşê hate pesendkirin. Di çarçoveya vê yasayê de ger ku Dadgehên RHK'ê ger ku rojnamegerekî darizîne pêwîst e beriya darizandinê sendîkayê agahdar bike. Dadgeh bêyî agahdarbûn û amadebûna darizandina rojnamegeran nikare darizandina tu rojnamegerekî pêk bîne. Her rojname an jî govar beriya weşanê divê bê sendîkayê û wê hejmara xwe tomar bike. Di destûra RHK'ê de her wiha yasaya Teqawudî ya Rojnamegeran jî hene.

**Di dest we de rêjeya rojnamegerên ku li Herêma Kurdistanê hatine darizandin heye?**

Di derbarê vê rêjeyê de di dest me de daneyên bi rêkûpêk tune ne.

**Çima tune ne?**

Çimku divê hemû dadgeh bêne şopandin. Yanî hemû rojnamegerên ku têne darizandin li yek dadgehekê nayêne darizandin, li dadgehên cûda û li bajarên cûda têne darizandin. Li Duhok, li Hewlêr û li Slêmanî têne darizandin.

**Beriya niha we got dema dadgeh her rojnamegerekî darizîne pêwîst e me agahdar bike. Ji bo berhevkirina dane ev agahî bi kêr nayê, yan hun hemûyan naşopînin?**

Em hemûyan dişopînin lê di derbarê berhevkirin û sererastkirina van daneyan de hin kêmasî hebûn. Lê belê niha me lijneyeke ku van daneyan bi rêkûpêk berhev bike jî saz kir. Lê ez dikarim bêjim ku li Herêma Kurdistanê, heta niha nêzîkî 400 dozên ku rojnameger hatine darizandin hene.

**Ev rojnamegerên ku hatine darizandin bêtir li ser çi babetan hatine darizandin?**

Bêtirê wan li ser teşhîrkirinê ne. Yanî raport û nûçeyên ku bê piştrastkirin û belge di derbarê kes û dezgehan de hatine weşandin. Piraniya wan li ser vê sedemê hatine darizandin.

**Darizandinên ku li ser helwestên siyasî pêk hatine tune ne?**

Dozên bi vî rengî tune ne, Çimku di çarçoveya yasaya rojnamegeriyê ya RHK'ê de dadgeh nikare tu rojnamegerekî darizîne yan zindanî bike. Ji bo rojnamegeran tenê cezayê pere heye. Yanî rojnameger her çiqas ceza bixwe jî ew dikare hemû cezayê xwe veguhêze cezayê pere. Dema me yasaya rojnamegeriyê amade dikir ku pêşkêşî parlamentê bikin, li ser vê babetê gellek nîqaş hatin kirin; Lê belê em ji ya xwe nehatin xwarê û me yasayê bi vî awayî pêşkêşî parlamentê kir. Di vê yasayê de her wiha me ji hikûmetê, parlamenê û dezgehên rêveberiyê re çapemeniyê qedexe kir. Yanî li gor vê yasayê nabe ku hikûmet, parlament an jî dezgeheke fermî ya rêveberiyê dezgeheke ragihandinê damezirîne.

**Hikûmet an jî desthilat dikare dezgeheke ragihandinê bide girtin?**

Na nikare tiştekî wîsa jî bike. Hikûmet, parlament an jî serokatî nikare rojname yan jî televizyonekê bide girtin. Tenê dadgeh di çarçoveya wê yasayê de dikare biryara girtin an jî rawestandina weşana rojname yan jî televizyonekê bide. Ji bilî dadgehê tu hêz nikare.

**Pêwendiya we bi rojnamegerên Bakurê Kurdistanê re çawa nin?**

Ji Bakurê Kurdistanê nêzîkî 60 rojnamegerên ku endamên sendîkaya me ne hene. Li Rojhilat 40 rojnameger û li Rojava jî nêzîkî 40 rojnamegerên ku endamên me ne hene. Her wiha li Ewropa nêzîkî 100 endamên me hene.

**Wek Sendîkaya Rojnamegerên Herêma Kurdistanê, ji bo dezgehkariya ku dikare hemû rojnamegerên Kurdistanê li hev bicivîne we çi kar û xebatan kirî ye?**

Ji bo federasyona rojnamegeran ku dikaribe hemû organên çapemeniyê yên çar perçeyên Kurdistanê di bin sîwana xwe de li hev bicivîne me wek Sendîkaya Rojnamegerên Kurdistan lijneyeke amadekar saz kir û me bi ser vê lijneyê ve dest bi amadekirina projeyekê kir. Di çarçoveya vê xebatê de bi taybet ez çûme Qendîlê, çûme Amedê û li Amedê min serdana hemû dezgehên ragihandinê kir. Ez çûme Rojhilat û Rojava, çûme Belçîka, Almanya û hin welatên Ewropa jî û min li van deran jî bi berpirsên dezgeh û nûsîngehên dezgehên ragihandinê yên kurd re hevdîtinan pêk anî. Di hemû van serdan û hevdîtinan de em rastîi bertekên pir erênî hatin. Ev xebatên me di dema xebatên lidarxistina Kongreya Neteweyî de pêk dihatin û ji ber vê yekê bandoreke erênî li ser vî karî jî dibû. Lê mixabin, ji ber ku xebatên lidarxistina Kongreya Neteweyî hatin rawestandin, xebatên me jî rawestiyan; Ango em bêçar man ku rawestînin.

**'Armanc federasyona rojnamegeran bû'**

**Armanca projeya we çi bû?**

Armanca wê ew bû ku hemû dezgehên ragihandinê yên Kurdistan di bin banê Federasyona Rojnamegerên Kurdistanê de li hev bicivîne û pirsgrêkên ku bi ser çapemeniyê der dibin û bandoreke neyênî li ser civak, siyaset û karê ragihandinê dikin çareser bike.

**Di çarçoveya bandora partiyên siyasî de, ji bo polîtîkayên rikber ên weşanên dezgehên çapemeniyê dakevin asteke nizimtir hûn çi dikin?**

Sendîkaya Rojnamegerên Kurdistan, sendîkaya hemû rojnamegerên Kurdistanê ye û tu pêwendiyeke wê bi helwestên bîrdozî û siyasî re tune ye. Hemû rojnamegerên ku şertên qanûnî yên rojnamegeriyê bi cih tînin dikarin bibin endamên me. Di lijneya bala ya sendîkayê de nûnerên hemû partiyên siyasî hene; Lê belê armanca vê lijneyê ne berjewendiyên partiyên ku ew endamên wê ne, berovajî armanca wê ew e ku di rojnamegerî û televizyonkariyê de bingeheke profesyonel saz bike. Ji ber vê yekê em, hemû karên xwe bi rîwangeya serbestiya rojnamegerî ya ku di kanûnan de hatiye destnîşankirin dikin û çi alîgir, çî azad, ji bo hemû rojnameger di çarçoveya nirxên rojnamegerî de tevbigerin û karên xwe yên pîşeyî derxin pêş heldiwestin. Ji bilî van, wek em dizanin azadiya rojnamegeriyê rasterast bi serxwebûna aboriyê re grêdayî ye. Bi vê mebestê, ji bo çapemenî di warê aborî de hewceyî qadên din nebe û dikaribe li ser lingên xwe bisekine jî em xebatan dikin. Ji bo qezencên ji reklaman û karên din ê bi vî rengî, em şirketên ku di meşandina aboriya herêmê de xwedî gotin in teşwîq dikin.

**Yasaya tanzîmkirina rojnamegeriyê ya Destûra Rêveberiya Herêma Kurdistanê (RHK) projeya sendîkaya me ye. Me vê yasayê amade kir û pêşkêşî parlamentê kir û paşê hate pesendkirin. Di çarçoveya vê yasayê de ger ku Dadgehên RHK'ê ger ku rojnamegerekî darizîne pêwîst e beriya darizandinê sendîkayê agahdar bike.**

**Daxwaza we ji siyasetê çi ye?**

Li Kurdistanê her çiqas organên ragihandinê yên partiyên siyasî hebin jî, organên serbixwe jî hene. Çapemeniya azad bi drûşman pêk nayê. Hêviya me ji Rêveberiya Herêma Kurdistanê(RHK) ew e ku ji bo bingeheke azadiyê ya çapemeniyê bê çêkirin piştgirî bide çapemeniyê; Lewre piştgiriya rêveberiyê ji piştgiriya partiyên siyasî ya dezgehên nêzîkî xwe cudatir e. Bi vî awayî çapemenî dikare di çarçoveya daxwazên gel de partiyên siyasî û hemû hêmanên siyasî û civakî çavdêrî bike, ger şaşî hebin rexne bike û ji raya giştî re eşkere bike. Heta niha me 14 raportên 6 mehane amade kirine û ger ku ev raportên me bêne xwendin, diyar dibe ku me tu carî destûr nedaye partiyan ku bandorê li ser sendîkayê bikin. Armanca me ew e ku em çapemeniyê ji bin nîrê siyasetê derxînin û şêweyên tendurust ên rojnamegeriyê serdest bikin. Yanî profesyoneli esasê karê me ye.

**Ji bo binpêkirinên mafê rojnamegeran hun çi xebatan dikin?**

Em dezgeheke sivîl in û hêzeke me ya serbazî tune ye ku em zextan li ser tu kes, rêxistin yan jî dezgehan bikin. Di çarçoveya kanûnî de binpêkirinên li Başûrê Kurdistanê pêk tên ji alî dadgehan ve têne lêpirsîn û eger li dij rojnamegeran an jî rojnamegeran li dij kes û dezgehan tawanek kiribe dadgeh dest dihavêjin bûyerê û çi pêwîst be dikin. Ji bo binpêkirinên ku li derveyî Herêma Kurdistanê jî pêk tên jî em tenê dikarin bi daxuyanî û beyanatan van binpêkirina rexne bikin û daxwaza rawestandina binpêkirina bikin. Wek nimûne; Dema Kantona Cizîrê xebatên televizyoneke kurd qedexe kir me helwesta wê rexne kir û me ji rêveberiya kantonê daxwaz kir ku vê qedexeyê rake. Her wiha dema ku Tirkiyeyê ji rojnamegerên kurd re astengiyan derxist me bi daxuyaniyê vê yekê rexne kir û me ji Tirkiyeyê xwest ku van astengiyan rake.

**Hêza we heye ku hun dikaribin li dij biryareke neyênî ya hikûmetê derkevin?**

Hikûmet bi tu awayî nikare zextan li ser sendîkaya me bike û di hemû plan û projeyên di derbarê çapemeniyê de bêçar e ku nêrîna me werbigire û me wek berpirsê vê qadê bibîne. Ne tenê hikûmet hemû alî û siyasî jî nikare li ser me zextan bike; Çimku çarçove û sînorê rojnamegeriyê di qanûnan de hatiye destnîşankirin û tu hêz nikare li derveyî van qanûnan bandorê li ser me bike. Di qanûn de jî Sendîkaya Rojnamegerên Kurdistan di warê ragihandinê de wek biryardar hatiye destnîşankirin û bêyî erêkirina me di derbarê me de tu biryar nayê stendin. Şaştêgihîştinek heye ku di vê babetê de Wezareta Çandê biryardar e; Lê belê ne wisa ye. Biryardar Sendîka ye. Di qanûn de hatiye desetnîşankirin ku çi eleqeyeke dadgeh, wezaret, parlamentê bi çapemeniyê hebe, Sendîkaya Rojnamegerên Kurdistan wek aliyekî fermî berpirsyarê vê babetê ye.

**Wek yasa pêwendiya we ya bi RHK'ê hikûmeta navendî re çawa ye? Hûn li gor yasayên kîjan rêveberiyê berpirsyar in?**

Niha di vê babetê de pirsgirêkek heye. Ji bo rojname, govar, malperên ajans û nûçeyan yên elektronîkî û hemû weşanên nivîskî em bi tevahî bi destûra RHK'ê ve grêdayîne; Lê belê ji ber ku radyo û televizyonên ku bi peykên asmanî weşanan dikin pêwîstî bi destûra hikûmeta navendî û dezgeha wê ya berpirsyar heye. Çawa ku li ser xala 140 a destûra Iraqê, li ser erka Pêşmerge û li ser neftê di navbera RHK'ê û hikûmeta navendî de pirsgirêk hebin, di vê babetê de jî pirsgirêk hene. Niha em hin amadekariyan dikin ku em di vê babetê de pêşniyazek li hikûmeta navendî bikin. Lê heta niha bi encam nebûye.

# MELETÎ

**Meletî li gor rêvebiriya pergalê parêzgeh e. 13 navçe, 33 nahiye û 505 gund û 872 komik bi bajêr ve girêdayî ne. Nifûsa Meletî nêzîkî 1 milyonî ye. Navçe yên Meletiyê evin: Arga, Wêranşar, Hekîmxan, Erebgîr, Erxewan, Darende, Şîro, Qulûncax, Batalxazî, Çelaklî, Kele, Yazîxan û Çîrmikê.**

Welat Baz

Meletî, li Mezopotamya jorîn di navbera Kurdistan û Tirkiyê de sînor e. Bajêr li jora tejena Firadê cîh digre. Rojhilat û bakûrê rojhilatê bajêr ji alî çemê Firadê ve hatiye pêçan. Başûrê xaka Meletiyê ji alî çiyayên Torosan, bakûrê bajêr jî ji alî Çiyayê Nûrheq ve hatiye bendkirin. Meletî, ji ber taybetiyên coxrafya xwe di warê parastinê de cîhekî stratejîk e. Bajêr ji demên kevn vir ve, rêyên girîng ê Mezopotamya, Anatolya û Rojhilata Navîn gîhandiye hev. Rêyek ber bi Erziromê, rêyek ber bi Wanê, rêyek ber bi Amedê, rêyek ber bi Gurgûmê û yek jî ber bi Ruhayê ve diherike. Van rêyên ku li Meletiyê digîjtin hev, dêrêjî nav Anatolya, Qafqasya, Sûrî, Kurdistan, Îran û heremên din dibin. Meletî di nav hêlîlarên rojhilat ê 38 û 39 û di nav hêlîpanên bakûr ê 37 û 39an de ye.

## Erdnîgar

Nîsbeta xaka bajêr 12 hezar û 313 km² ye. Ji axa Meletiyê % 45 çiya, ji % 12,9 ji deştan û ji % 41,6 jî ji platoyan pêk tê. Bajêr ji deryayê 900 metre bilind e. Di nav xaka bajêr de gelek çiya û girên bilind hene. Torosên rojhilat ji alî başûr ve bajar derbend kirine. Rêzeçiyayên Meletiyê, Semsûrê ji bajêr diqetîne. Çiyayê herî bilind di erdîma Meletiyê de Çiyayê Şîlan e ku 2545 metre bilind e. Çiyayên Meletiyê ê din jî evin: Çiyayê Derbend (2428m), Çiyayê Kepez (2140m), Çiyayê Xeyrik (2306m), Çiyayê Boz, Çiyayê Reş, Çiyayê Tûcak, Çiyayê Şeqşeq, Çiyayê Hişk û Çiyayê Qertelan. Li çiyayên Meletiyê teyrên kovî ê wek, werdek, qaz, kew, leglek, qertel û baz hene. Li herêmê, gur, rovî, keroşk û berazên kovî jî hene.

## Deşt

Li deşt û zêwiyên Meletiyê kiştûkal tê kirin û ji axê berhemên wek genim, pincara şekir, titûn û fasûlye tên sitendin. Li xaka Meletiyê gelek deşt jî hene. Bajêr bi saya van deştan bi heremên din ve tê girêdan. Dîsa rêyên hesin û rêyên qîr ji van deştan derbas dibin. Deşta herî mezin Deşta Meletiyê ye. Ev deşta ku bi sedan km bilind e, wek zozana ye û 830 km² firehe.Li van deştan zêdetirê kiştûkalê, fêkî û nebatên sanayiyê jî tên çandin. Herwiha Deşta Wêranşarê, Deşta İzol, Deşta Erxaç, Arga, Mixdî, Çemê Ziwa, Yazîxan û Surgî jî deştên bi xêrûbêrin. Li van hemû deştan kiştûkal û çandinî tê kirin. Ji ber van taybetiyan sûka hubûbatan a bajêr gelek qelebalix û şên e. û her cûrê berhemên axê tê temîn kirin. Meletî bi fêkiyên wek trî û sêvên xwe jî naskiriye. Ji triyê ku ji rezên Meletî tê çinîn, li fabrîqa Mazrayê şarabên navdar tên hilberîn.

## Arûng

Belkî jî berhem û fêkiya herî navdar ku Meletiyê bi Kurdistanê û dinyayê daye naskirin arûngên vî bajarî ne. Bi gotinekî din, qeysî ne. Li gor belgeyên dîrokî arûng b.z di sedsala 4an de di sefera Îskender de hatiye Kurdistanê. Ji ber ku li vî welatî derfetên çandin û hilberîna vê fekiyê hebûye, evder bûye welatê arûngan. Cara yekem Tê hezrkirin ku arûng li Çînê hatiye danîn û ji vir belav bûye. Di dema Şerê Persîi û Romayiyan de jî, ji alî bazirganên Ermenî ve li İtalya û Yûnanistanê hatiye belavkirin û ji van deveran jî li dinyayê belav bûye. Arûngên bazara cîhanê ji % 5, li Kurdistanê tê hilberîn. Dîsa li cîhanê tenê arûngên Meletiyê tên zivakirin û zivistanê tên xwarin. Li Meletî bi navên Arûnga Meletî, Arûnga Hecîxelîl, Arûnga Qîzahecî, Arûnga Hesenbeg, Arûnga Qalikhişk û çend cûrên din jî arûng hene. Arûng ji bilî Meletî, li Erzîngan, Mazra, Îdir û Qersê jî tê hilberîn. Ji bo hilberîna arûngan li bajêr fabrîqayekî jî hatiye damezirandin.







## Çem

Çemê Firad li rojhilatê Meletiyê sînorê Mazrayê, ber başûr ve jî sînorê Amedê û Meletiyê ji hev diqetîne. Xaka Meletiyê ji alî çem û avên xwe ve dewlemend e. Çemên ku Deşta Meletiyê av didin ji çiyayên derûdorê dizên û tevlî Firadê dibin. Di axa Meletiyê de çemê herî mezin Toxma ye. Çemên din ku ji axa vî bajarî dizên tev daxilê Toxma dibin. Çend çemên girîng evin: Helawûn, Epreme, Xorata, Ordûz, Surgî, Xatûn, Exmîr, Şîro, Şotik, Qozlû, Erebgir û Davûlgan. Dîsa di xaka Meletiyê de gelek germav û serêkanî, her sal di mehên havînê de gelek rûniştvanên bajêr dikin mêvan. Di nav van deverên mesîre û geştê de Xorata, Taqûz û Surgî gelek navdayî ne.

## Bendav

Li ser xaka Meletiyê di salên dawîn de, li nêzî navça Weranşar û Arga, bi navê Sultansuyu, Polat, Medik û Surgü çar bendav hatine çêkirin. Van bendavan li ser Çemê Toxma û çemên din ên biçûkin. Dîsa, erdnîgara Meletiyê ji bakûr ve cîranê gola Bendava Kebanê û ji rojhilat ve jî cîranê gola Bendava Karakaye ye. Gola Karakaya di nav tixûbên Meletî de 150 milyon m2 ax dagir kiriye. Herwiha di dema avakirina vê bendavê de 67 gund di bin avê de man. Çemê Firadê jî dora xaka Meletiyê wek kevanekî pêçaye û di sînorê Mazrayê de wek goleke mezin, çend km durî nawenda bajêr e.



## Maden

Axa Meletiyê ji alî madenên bin erdê ve dewlemend e. Bi taybetî gelek rezerwên fireh ê hesin, profîlît û lînyît hene. Li gor lêkolînan li texma Hekîmxan, Wêranşar û Şîro nêzî 600 mîlyon ton rezervê hesin hene. Hesinê Meletiyê piştî tê derxistin, li fabrîqayên Karabük û Ereğli ya Tirkiyê tê bikaranîn. Dîsa 24 mîlyon ton profîlît û milyonek ton jî lînyît li nêzî Navça Şîro û navenda bajêr tê derxistin. Li Meletiyê alamînyûm, qrom, manganez û absest jî heye û van damaran li gor pêdiviyan car caran tên xebitandin.

## Rêvebirî

Meletî li gor rêvebiriya pergalê parêzgeh e. 13 navçe, 33 nahiye û 505 gund û 872 komik bi bajêr ve girêdayî ne. Nifûsa Meletî nêzîkî 1 milyonî ye. Navçe yên Meletiyê evin: Arga, Wêranşar, Hekîmxan, Erebgîr, Erxewan, Darende, Şîro, Qulûncax, Batalxazî, Çelaklî, Kele, Yazîxan û Çîrmikê. Meletî ji bakûr ve cîranê Sêvaz û Erzînganê, ji rojhilat ve bi Mazra û Amedê, ji başûr ve bi Semsûrê û ji rojava ve bi Gurgûmê ve cîran e. Şeniya Meletiyê ji % 90 kurd in. Gelek kurdên vê deverê elewî ne. Bajêr di warê demoxrafya xwe de nawendeke pîrreng e. Di demên kevn de li bajêr gelek ermenî û suryanî jî hebûn. Piştî dagirkirina Kurdistanê ji alî Osmaniyan ve hin eşîrên tirkmen jî li bajêr bicîh bûn. Dewleta Osmanî piştî ku di salên şerê yekem de ermenî û suryaniyan qirkir, di salên dawîn de jî li Meletiyê, îsewiyên ku ji ber kêra wan filitîne, heland. Berê li Meletiyê metropolitî ya suryaniyan hebû. Lê îro li bajêr tenê çend malbat mane û dêra wan jî girtî ye. Rewşa ermeniyan jî wiha ye.

## Nav

Navê Meletiyê, ji Hititiyan maye. Navekî 5 hezar saliye. Li gor çavkaniyên nivîskî, di vê demê de ji bajêr re digotin 'Melitea'. Heman nav bi nuansan di çavkaniyên Asûrî û Ûrartoyan de jî derbas dibe. Kîtabeyên





van şaristaniyan, navê vî bajarê kevnare wek 'Melîtea', 'Melîd', 'Melîde', 'Melîddû' an jî 'Melîta' qeyd dike. Di dema Romayiyan de jî wek 'Melîta' an jî 'Melîtene' hatiye binavkirin. Ev nav paşê şeklê xwe yê îro girtiye û niha ji alî Tirkan ve wek 'Malatya', ji alî Kurdan ve jî wek 'Meletî' tê binavkirin.

## Dîrok

Ji kolanên arkeolojîk ê bermayiyên ser xaka Melediyê hatine kirin, eşkere bûye ku 4000 sal b.z, di dema kalkolîtik de însan li vê deverê bicîh bûne û şaristaniyan avakirine. Li gor dîroka niviskî Meletî di sala 1650'an de wek bajarekî Hititiyan bûye. Piştî 550 sal, bajêr di sala 1100'an de dikeve destê Asûriyan û di salên 800'an de jî dikeve destê Ûrartoyan. Medên bav û kalên Kurdan ji sala 612'an heta sala 550'an Melediyê bidest dixin. Paşe dema Persiyan destpêdike. Di salên 330an de ku Îskender, Mezopotamyayê bidest dixe, nêzi 1000 salî, yanê p.z heta salên 650'an herem di destê paşengên wî û Împaratoriya Romayê, paşê jî di destê Bizansiyan de dimîne. Di dema Bizansiyan de, di sala 712'an de girseyên Ermeniyan li Meletî bicîh bûn. Dîsa p.z di salên 969'an de bi fermana Împaratorê Bizansê, ji Suriyê gelek Yaqûbî hatin û li heremê bicîh bûn. Heman sal fermandarê Artêşa Muslumanan Hebîb bin Mesleme bajêr bidestdixe û hukumdariya Ereban 400 sal dajo. Di salên 1050an de Selçûqî tên heremê û Meletî êdî di nav begê wan û Kurdan de dest dugehurrîne. Ev rewş heta 1400'an, yanê heta dagira Osmaniyan dajo. Piştî ku Meletî dikeve destê Osmaniyan, di salên 1401'an de ji alî Artêşa Tîmûr ve tê xerakirin. Bajêr piştî serdestiya Osmaniyan cardin serersat dibe. Meletî di bin bandora serhildanên heremê de jî dimîne. Di sala 1580'an de, di serhildana Celalî, di sala 1603'an de jî di serhildana Zeynel û Hemze Beg de xeradibe. Piştî salên 1847'an wek liwa û sancax pêşiyê bi Xarpûtê ve, paşê bi Diyarbekir ve tê girêdan. Li gor salnameyan di sala 1914'an de nifûsa bajêr tevî navçeyan 65 hezar e. Ji vana 18 hezar kes Ermenî ne. Piştî qira Ermeniyan nifûsa wan heliya.

## Girêşêra

7 km dûrî nawenda Meletî, li herema Girêşêra ji salên 1932an vir ve kolanên arkeolojîk tên kirin. Ev kolan hem dîroka Meletî hem jî a Mezopotamya û Kurdistanê ji gelek aliyan ve ronî dike. Kolanên ku heta sala 1939'an domkir, di serkeşiya Luis Delaporte yê frensî de hat meşandin. Piştî şerê cîhanê ê dûyem di sala 1946'an de Arkeolog Schafer û ji 1962'an vir ve jî Arkeologê İtalî Palmîrî û Pûglîsî dest bi kolanan kirin. Kolanên li Girêşêra hîn jî didomin.

Di encama van kolanên arkeolojîk de derket holê ku, ev girik ji dema dawîn a kalkolîtîk, heta dema Îslamê wek nawendeke rûniştvaniyê hatiye bikaranîn. Herwiha Meletî ji ber ku di sînorê Mezopotamya û Anatolya de ye, ji demên kevn vir ve, bûye wek bêndera çanda van şaristaniyan jî. Di kolanên Girêşêra de, berhemeke dema Hititiyan hatiye derxistin. Evder qesrekî biîhtîşam bûye. Çend ode, derî û dîwarên qesrê derketine holê. Di kolanan de fîgurên lawir û însanan, morên çapê jî hatine dîtin.





Kolanên arkeolojîk nîşandane ku, hin berhemên vê derê ji dema dawîn a kalkolotîk mane. Ev jî teqabulê 3 û 4 hezar sal b.z dike. Di nav van bermayiyan de paristgehekî 6 hezar salî jî heye. Kûp, firaqên gilower û hin wazoyên wê demê jî hatine derxistin. Van bermayiyan nîşandidin ku çanda vê derê perçeyekî ji çanda Mezopotamya ye. Li ser vê qata kalkolîtik, berhemên dema tûncê hene. Di vê demê de bajar hîn jî bi pîlan e. Avahî li ser kolanên teng rêzkirin. Berhemên keramîk ku bi destan hatine çêkirin û firakên ku bi hacetan hatine çêkirin jî hene. Herwiha gelek bermayiyên biçûk jî di kolanan de hatine derxistin.

## Sedsala 20

Di serê sedsala 20'an de wek hemû Kurdistanê li Meletî jî welatparêzî geş bû. Kürd Teawün Cemiyeti ku di ala 1908'an de li Îstenbolê hatibû damezirandin, li herema Meletî jî dixebitî. Piştî salên Şerê Cîhanê ê Yekem jî ku li Amed û Mazrayê Kürd Teali Cemiyeti şaxan vekir, li Meletî jî gelek alîgir peyda kir. Yek ji wan Battalzade Xulisî Efendî bû ku şaxekî vê komela welatparêz li Erebgîra Meletî vekiribû. Di van salan de walî, yanî mutasarifê Meletî Xelîl Rehmî Bedirxan bû. Xelîl Rehmî welatparêzekî Kurd bû. Eşîrê vê deverê ê çekdar birêxistibû. Bi taybetî Eşîra Rîşwanan welatparêz bû. Di vê pêvajoyê de Majorê Îngilîz Noel, ji bo çavderiya heremê û meyla welatparêziya Kurdan bibîne tevî Kamûran Bedirxan û Ekrem Cemîlpaşe di tebaxa sala 1919'an de hat heremê û Xelîl Rehmî ziyaret kir. Yek ji xebatên Xelîl Rehmî Bedirxan jî ew bû ku duxwest tevî Waliyê Mazrayê Ali Galip Beg, Mustafa Kemalê serokê tevgera netewperestê Tirk bigre, lê ew bi serneketin û mecbûr man ku ji heremê veqetin.

Ev bajarê kevnare di gelek çavkaniyên kevn de jî cîh girtiye. Wek dû mînak ji wan, bîranînên Generalên Alman Moltke û çavderiyên gerok Ewliya Çelebî ne. Ewliya Çelebî yê ku di sedsala 16an de hatiye Meletiyê, vi bajarî bi gotina xwe wek 'deverekî çiyayan û a Kurdan' binavdike û wiha dibêje: ‚Ji ber ku hewa vê derê xweşe, zilamên wan heta 60-70 salên xwe jî li ser piya ne û diranên wan wek înciyan e. herçiqas gelek pîr bin jî rûyên wan sor e û gelek qelewin. Ji ber ku av û hewaya wê xweşe, însanên vê derê jî xweşikin. Li vî bajarî 7 cûr sêv hene. Xwedayê alemê rengekî wiha daye van sêvan ku sorê wan sor, morê wan jî mor e. Eşrafê Melediyê û jinên bajêr ê kibar bi şima li ser van sêvan helbestan dinivisînin.'

Li gor salnameyên Osmaniyan, berî serdana Ewliya Çelebî di sala 1560'an de nifûsa bajêr 8700 kes bûye. Ji wan 1300 kes Ermenî ne.

Generalê Alman Moltke jî ku di sala 1838'an de tevî serleşkerê Osmaniyan Hafiz Paşa hatibû Kurdistanê û di tefandina serhildanên Kurdan de rol girtibû, di nameyên xwe de behsa Melediyê dike. Wê demê Meletî wek liwayekî bi Eyaleta Gurgûmê ve girêdayî bû. Dema Moltke tevî Artêşa Osmanî tê bajêr, nifûsa bajêr 12 hezar e û bi qasî 5000 avahiyên wê heye. Artêş ji bo ku zivistanê derbas bike, gelê bajêr ji xaniyên wan derdixe û bajêr dike garnîzonekî mezin. Gelê Meletiyê jî li ser vê yekê, deh km dûrî bajêr li taxa bi navê Aspûzû xaniyên nûh avadikin û li wir bicîhdibin. Moltke dibêje ku piştî leşker ji Melediye derketin û çûn, ne mumkûn bû ku xwediyên xaniyan malên xwe nasbikin, lewra leşkeran bajar xerakiribûn.

Meletî bi qehremanên xwe yen destanên jî navdayî ye. Yek ji wan Battal Xazî ye. Di derheqê Batal Xazî de tiştê ku tê zanîn ew ji Meletî yê ye û li dijî Artêşa Bîzansî şerkiriye. Qasî ku Ewliya Çelebî salox dide, di çavkaniyên Ereban de ew wek serkeşekî Musluman tê naskirin, ku Melediyê ji Bîzansiyan sitendiye. Tirkên ku bisedan sal piştî Ereban hatine heremê jî, Batal Xazî wek qahremanekî xwe didin nasandin.

Di salên dawîn de Meletî di gelek berhemên wêje ya tirkî de jî cîh girt. Romannûs Kemal Tahir û Demirtaş Ceyhun di romanên xwe yê ku di salên 1940 û 1960'an nivîsandine jiyana vî bajarî û zîndana Melediyê wek mijar hilbijartine. Herwiha di dehan diwanên helbestvanan de jî li ser Melediyê rêzên pezndar hatine nivîsandin.

## Kele

Di dema Romayiyan de p.z di sedsala 1an û di salên paş de Kurdistan seranser bi keleyan hatiye rîsandin. Kele ji bo parastin, ewlekarî, bazirganî û bajarvanî xwedî gelek fonksiyonan bûye. Ji ber vê yekê dema Romayiyan Meletiyê bidestxistine derûdora bajêr bi diwarên kelê asê kirine. Kel a Meletî li keviya Çemê Derme ye. Piştî zayînê di sedsala 1an de hatiye avakirin. Li gor belgeyên kevn 11 derî û 95 bircên kelê hebûne. Di dema pêşîn de gelek car hatiye tamîrkirin. Pîlana kelê pêncgoşe ye. Hin diwarên kelê bi kevirên rengîn hatine lêkirin û bi gelek motîvên balkêş hatine neqşkirin. Kela Meletî îro xirabeyeke.

## Mizgefta Mezin

Wek keleyan li hemû bajarên Kurdistanê mizgeftên mezin jî hene. Mizgefta Mezin a Meletî di sala 1224an de ji alî Alaadînê Keykûbat ve hatiye çêkirin. Mîmarê kelê, Yaqûbê Ebûbekir e. Mizgeft ji kevneşopiya mîmarî ya Selçûqiyan e. Çînî û mozaîqên hindirê camiyê di dewra xwe de mînak bûne. Minare û dîwarên camiyê ji kevir û liviran hatine avakirin. Mizgeft di salên 1970an de tamîr dîtiye.

## Medrese

Medresa Şahabiye Kubra li kêlekê mizgeftê cîh digre û perçeyekî ji kuliyê ye. Medrese ji alî Mîr Şehabedîn ve di sedsala 14an de hatiye avakirin. Ji vê avahiyê heta îro tenê tirbe, eywan û alî rastê deriyê tac maye. Mizgefteke kevn li bajêr Mizgefta Nûh e. Di salên 1912'an de hatiye înşakirin. 3 minarên camiyê hene. Pîlana camiyê çargoşe ye. Avahî ji kevirên birrandî hatiye lêkirin û bi yek qubeyî ye. Mizgeft hîn jî, ji îbadetê re vekiriye.

## Minare

Li Meletî berhemekî olî jî Minara Melîk Sûnûlah e. Minarê ji liviran hatiye avakirin. Mizgefta li kêleka minarê xerabûye. Ev mizgeft di sala 1394an de ji alî Çerkezê Evdila ve hatiye çêkirin. Evder di nav Muslumanan de wek 'Ucaxa Waîzan' tê binav kirin.Herwiha li Meletî Tirba Sidî Zeyneb, Tirba Îmam Zeynel Abîdîn, Kerwansaraya Mistefa Paşa jî wek berhemên kevnare, naskirîne û bargehên ziyaretê ne. Qasî ku nawenda bajêr di warê berhemên kevn de dewlemend e, navçên wek Hekîmxan, Darende û Erebgîr jî ewqas dewlemendin.



Doç. Bülent Küçük:

# Aliyan amadekariyên şer dikirin

Kalê Badî

Li Bakurê Kurdistanê jinûve destpêkirina şer ji bo gellek kesan surprîz xuya bike jî, ji bo kesên ku herêmê û geşedanên nepenî bi kûrî dişopînin ne surprîz bû. Lewre hem PKK û hem jî dewleta tirk li hêlekê diyalogê dimeşandin, li hêla din amadekariyên şerekî mezin dikirin. Ev rewş berovajiyê helwesta HDP'ê ya 'Tirkiyeyîbûn'ê xuya dike, lewre serkeftina hilbijartinên 7'ê Hezîranê, encama helwesta Erdoğan a li dij Rojava, geşbûna hesta neteweyî ya kurd û amadekariyên şer ên ku gelê kurd ji nêz ve didît bû. Doçentê Cîgir yê Beşa Sosyolojiyê ya Zanîngeha Boğaziçi Bülent Küçük geşedanên li Rojava, rîwangeyên cûda yên HDP û dewletê ên 'Tirkiyeyîbûnê û guherîna bîrdoziya dewleta neteweyî ya ber bi dewleta emperyal a Tirkiyeyê wek sedemên jinûve destpêkirina şerê li Bakurê Kurdistanê destnîşan kir û got: "Aliyan ji mêj ve amadekariyên şer dikirin"

## 'Tirkiyeyîbûn'a HDP'ê û dewletê ji hev cûda ye

"Bi raya min 'Tirkiyeyîbûn'a ku HDP tîne ziman û ya ku dewlet dixwaze pêk bîne li hev nagoncivin. Kurd, ji ber ku li her aliyê Tirkiyeyê dijîn û di gellek sektoran de dixebitin, zimanê tirkî dizanin û ji çanda populer û jiyana rojane ya Tirkiyeyê agahdar in û di nav de ne, ji xwe Tirkiyeyîbûyîne. Cihêbûna siyaseta HDP'ê ya ku bi vê helwesta nû ya pêvajoya hilbijartinên 7'ê Hezîranê derket holê tenê ew bû ku HDP'ê yekem car dest avêt mijarên din ên derveyê pirsgirêka kurd. Di sê salên dawî de HDP'ê her dihanî ziman ku pirsgirêk ne 'Tirkiyeyîbûn'a kurdan e 'Tirkiyeyîbûn'a tirkan û rojavayiyên Tirkiyeyê ye, lê belê bi hin tifaqên beşên civaka rojavayê Tirkiyeyê yên wek; elewî, çepgir û hêmanên din jî xwest ku sîwana siyaseta xwe berfirehtir bike. Mebesta dewletê jî ji 'Tirkiyeyîbûn'ê ew bû ku kurd bi Tirkiyeyê re bêne grêdan û tenê bi ser drûşmên pirsgirêkên bi meseleya kurd re eleqedar siyasetê nekin, ango bi pergala Tirkiyeyê re bêne entegrekirin. HDP û dewlet bi rîwangeyên cûda nêzîkî têgeha 'Tirkiyeyîbûn'ê bûn û di encamê de HDP'ê bandora siyaseta xwe berfirehtir kir û di hilbijartinan de serokatiya Erdoğan asteng kir."



Bülent Küçük

## Stratejiya dû qolî: Tirkiyeyîbûn û Kurdistanîbûn

Bülent Küçük di axaftina xwe de balê kêşa ser tifaqa HDP'ê ya bi aliyên Kurdistanî û anî ziman ku HDP'ê li gel 'Tirkiyeyîbûn'ê li Kurdistanê jî bi beşên çepgir û oldar ên kurd re jî helwesteke 'Kurdistanîbûn'ê jî da meşandin û bi stratejiyeke dû qolî Tirkiyeyîbûn û Kurdistanîbûn'ê bi hev re meşand. Küçük diyar kir ku HDP taybet bi siyaseta xwe ya Kurdistanîbûn'ê serkeftin bi dest xist, rêjeya dengên xwe gihand ji sedî 13'an û got: "Ev stratejiya dû qolî ya HDP'ê û serkeftina wê, ji alî partiya desthilatdar û dewletê ve wek rîskekê hat dîtin û ji ber vê yekê payabilindên dewletê her HDP'ê wek organa PKK'ê didin nîşandan û wê wek berpirsê hemû pevçûn û kuştinên sivîl tawanbar dikin. Ev tawanbarkirin di nîqaşên di raya giştî de têne kirin jî xuya dibe.

## Rojava analîtîka cihêbûna sedemên hundurîn û derve têk bir

Bülent Küçük sedemên jinûve destpêkirina şer yên hundurîn û derveyî yên Tirkiyeyê wek cihêbûneke analîtîk nirxand û got: "Cihêbûna sedemên şer ên hundur û derveyî ji alî kurdan ve bê wate ye; Lewre kurdên bakur, xwe ji geşedanên li Sûriye û bi taybet li Rojava dûr nabînin. Ji ber vê yekê cihêkirina sedemên şer ên hundur û derveyê Tirkiyeyê ji alî kurdan ve nayê kirin; Çimku, li Tirkiyeyê desthilat, di mijara pêvajoya çareseriyê de xwedî projeyeke siyasî ya mezin ku Rojhilata navîn jî duhunduran bû. Desthilata nû ya Tirkiyeyê di şûna pergala kevn ya burokratîk û asîmîlasyonî de xwest bi şêweyeke emperyal û belavker ku em dikarin wek Osmanîtiya nû bi nav bikin, hewl dida ku pirsgirêka kurd çareser bike. Wek em dizanin cewhera dewleta neteweyî sazûmaniya yek netewe, yek ziman û yek rengiyê ferz dike, lê belê dewleta emperyal li gel yekdestiya desthilatiyê heta radeyekê nasnameyan nas dike; Lewre ku nas neke nikare bondora xwe frehtir bike. Erê rast e, dewletê dixwest pirsgirêka kurd çareser bike, lê belê dixwest ku di çarçoveya armaca xwe ya mezin a emperyal de vê pirsgirêka ku ji bo wê dafika xeternak e ji pêşiya xwe derxe û ji bo ji armanca wê ya mezin re nebe asteng çareser bike. Piştî ku li Kafkasan, li Misir û Sûriyeyê ev armanca wê şkestan xwar, ji bo dewletê grîngiya çareserkirina pirsgirêka kurd kêm bû. Bi ser de piştî ku kurdan li Rojava herêmên xweser ragihand, li Bakur di warê siyasî de destkeftek mezin bi dest xist û di qada navneteweyî de stêrka kurdan geş bû, dewletê biryar da ku van destkeftên kurdan têk bibe û kurdan lawaz bike"

## 'Beriya hilbijartinan nîşaneyên destpêkirina şer xuya bûn'

Bülent Küçük di nirxandinên xwe de li ser nîşaneyên jinûve destpêkirina şer jî rawestiya û angaşt ku beriya hilbijartinan jî PKK'ê dizanibû ku egerî heye dewlet dest bi şer bike û ji ber vê yekê wê jî dest bi amadekariyên şer kir. Küçük wiha dom kir: "Piştî ku dewletê hêzên xwe yên leşkerî hem li herêmê û hem jî li ser sînorê Rojava bi cih kir dibe ku PKK'ê jî ji alî xwe ve amadekariyên şer kiribe û ev pêkan e" Di derbarê jinûve rawestandina şer de jî Küçük da zanîn ku di lêkolînên wan ên li ser ezmûnên dinyayê yên pirsgirêkên bi vî rengî de, dertê holê ku di nav 5 salên destpêkê de pir caran şer dîsa destpê kirine û dîsa hatine rawestandin û hin ji wan paşê hatine çareserkirin. Küçük got: "Her çiqas mercên Tirkiyeyê yên wek perçebûyîna kurdan û bandora perçeyên din û hin taybetiyên Tirkiyeyê ji ezmûnên dinyayê cûdatir bin jî, li Tirkiyeyê jî egerî heye ku alî dîsa şer rawestînin û dest bi diyalogê bikin. Çimkû rewş wiha berdewam bike egerî heye ku Tirkiye bibe Sûriye û şerekî navxweyî yê mezin rû bide. Her çiqas hişmendiya AKP'ê niha xeteriya berdewamiya vê yekê baş nexwînin jî ez rawestandina şer pêwîst dibînim û dibêjim ku ew ê alî dîsa vegerin rêbaza diyalogê" Küçük, di derbarê ragihandina parastina cewherî ya hin navçeyên Bakur de jî anî ziman ku hişmendiya min vê helwestê tênagihîje û got: "Di vê hengameya dijwariya pevçûnan de nikarim vê helwestê watedar bikim"

## Teşhîrkirina cenazeyê gerîlla

Li ser wêneyên bêrûmetiya li dij cenazeyên gerîllayân ên ku bi ser înternetê hatin belavkirin de jî Küçük cenazeyan wek egera herî mezin a rikberiya civaka kurd û tirk nirxand û tazîkirin û teşhîrkirina cenazeyên gerîlla wek wêneyê feraseta dewlet û raya giştî ya rojavayê tirkiyeyê destnîşan kir. Küçük got: "Tazîkirin û teşhîrkirina cenazeyê gerîlla dide xuyakirin ku ev feraset cenazeyên xwe pîroz dibîne lê yên kurdan bê nirx dibîne û bi vî awayî rikberiya civakan mezintir dike û kurdan bêtir ji Tirkiyeyê dûr dike"



# "DAIŞ projeya têkbirina kurdan e"

Evîndar Tekîn



Bi destpêka dagirkirina gelek herêmên li Rojhilata Navîn ya ji aliyê DAIŞ'ê re li qada ol, oldarî û bewermendiyê jî cîhan ket nava nîqaş û arîşeyên teorîk. Ji ber ku DAIŞ hemû kiryarên xwe li ser navê îslamê birêve dibe û wan di ayetên Qur-an'ê de bi cî dike, ew nîqaş û ragêşiya teorîk jî her ku diçe gur û cûretir dibe. Li gor hin derdoran DAIŞ bi hemû kirin û pêkhateyên xwe ji îslamê referansa xwe digire û ew bêşek e jî vê olê. Lê belê nêzikahiyeke giran jî ew e ku eleqeya DAIŞ'ê bi îslam an olekî din nîn e û her kiryarên wan li dij îslamê ne jî. Akademisyenên wek Nurettin Turgay û Hüseyin Şeyhanlıoğlu jî di nava van kesan de ne ku bixwe bi salan li ser beweri û oldariya îslamê lêkolîn û xebat kirine. Bi ya wan DAIŞ bi dûr û nêz ji îslamê cûda ye û eleqeya wê bi îslamê nîn e. Her wiha ew herdû akademîsyen bi ziman dikin ku DAIŞ ji aliyê hêz û dewletên ku naxwazin kurd li Rojhilata Navîn bibin xwedî maf û azadî û serxwebûn û ew ji bo vê hatiye sazkirin.

Piştî lêkolîna rojnameya emerîkî New Yort Timesê (NYT) ya li ser jinên ezdî yên ku karibûn ji dest DAIŞ'ê rizgarbin piştrast bû ku DAIŞ jinên ezdî wek mîrateya şer bi her cûreyê dij-mirovahî bikar tîne, her cûre destdirêjiya li ser jinan wek peywireke cîhadê dibîne û vê yekê wek rîtueleke olî dibîne. Xwedanas Nurettin Turgay rîwangeyên ku DAIŞ'ê bi wehabîtî û selefitiyê ve girê dide rexnekir û got; "Tu dokumentên ku bingeha feraseta wê diyar bikin tune ne. Ji ber vê yekê DAIŞ di Îslamê de bê bingeh e. Siyasetzan Hüseyin Şeyhanlıoğlu jî angaşt ku tu pêwendiya hişmendî û kiryarên DAIŞ'ê bi îslam û çanda Rojhilata Navîn re tune ye.

Piştî ku DAIŞ'ê Musil dagir kir, li Iraq û Sûriye'yê hêz û bandora xwe zêde kir û li ser pêkhateyên herêmên ku dagir kir pêkanînên dij-mirovahî pêk anî di qada siyasî û olî ya Rojhilata Navîn de jî li ser hebûna wê ya di nav ola Îslamê ya bingeh, hişmendî û feraseta DAIŞ'ê jî bû cihê nîqaşan. Bi vê mebestê me bi Serokê Beşa Zanista Makî ya Tefsîrê ya Fakulteya Xwedanasiyê ya Zanîngeha Dîcleyê Prof. Dr. Nurettin Turgay û Gerînendeyê Navenda Lêkolînên Siyasî ya Zanîngeha Dîcleyê Hüseyin Şeyhanlıoğlu re li ser mijarê lêkola. Nurettin Turgay amaje bi yên ku rehên DAIŞ'ê bi mezhebên îslamî ên wekî wehhabîtî û selefitiyê ve girê didin kir û ji ber beyî dokuman û deqên zanistî fikr û nêrînên xwe rave dikin rexne li wan kesan kir. Turgay got; "Lew re bingeha DAIŞ'ê ne diyar e. Wehabî, tiştên li dijî Qûr-anê qebûl nakin û liv û tevgerên DAIŞ'ê ne tenê li misilmanî, her wiha li dijî wehhabîtiyê ne jî. Leşkeren Seddam, piştî rûxandina Seddam bûbûn cerdevanên nepenî. Lê bi piştevaniya hin hêzan, dema ku li Iraq û Sûriye'yê valahiya desthilatê peyda bû, di van qadan de ew cerdevan derxistin meydanê. Mebesta wan jî xirabkirina Sûriye'yê û windakirina kurdan bûn." Turgay destnîşan kir ku îro di cîhana îslamê de têkoşîna ku tê kirin ne ji bo îslamê lê ji bo desthilatdariyê ye ku ev yek ji dewra Xelîfe Osman heta niha didome. Turgay got ku ne tene DAIŞ, îro hikûmeta Tirkiye'yê jî ne ji bo îslamê, ji bo desthilatdariyê tevdigere, lewre, ên li ser misilmantiyê tevdigerin, divê maf û hiqûqa tevahiya mirovan li ber çavan bigirin. Turgay anî ziman ku ji Adem Pêxember heta Hz. Mihemmed armanca hemû pêxember û pirtûkên pîroz aramî û bextewariya mirovahiyê ye û li gor Qûr-anê Xweda, Xwedayê hemû aleman ye û Qûr-an cudahiyê naxe navbera jin û mêran, kurd û tirkan, misilman û nemisilmanan. Nurettin Turgay di çarçoveya îslamê de kiryarên DAIŞ'ê wiha nirxand; "Gava ku DAIŞ kiryarên xwe yên li derveyî mirovahiyê dispêre ayetên Qûr-anê, derewan dike; Lewre li gor îslamê û li gor hemû pêxemberan, can, namûs, nijad, bawerî, mal û milk û hemû nirx pîroz in, divê êrîş li wan neyê kirin û bêne parastin.



Hüseyin Şeyhanlıoğlu



Nurettin Turgay

## 'Koletî û cariyetî di îslamê de tune ye'

Nurettin Turgay di berdewamiya axaftina xwe de anî ziman ku çavkaniyên rêzikên îslamê, Qûr-an û sunneta pêxember e û di tu ayetên Qur-anê de nayê gotin ku jinan ji xwe re bikin kole û got; "Pêxember qet cariye negirtine. Wek nimûne; piştî şerê bi cihûyan re, ji cariyeyekê re dibêje tu dixwazî ez te serbest berdim an li xwe mehr bikim? jinê gotiye min mehr bike. Frotina jinan, destavêtina bi zorê di jiyana pêxember de tune. Pêxember bi mebesta azadkirina koleyan bi sedan kole stendine û ew azad kirine. Lê belê îro ne tenê DAIŞ, hikûmeta Tirkiye'yê jî li ser îslamê siyasetê dike, ji Îsraîlê zalimtir e, lewre misilmanên Filîstîna di bin kontrola wan de îro bi zimanê xwe perwerdehiyê dibîne û di mizgeftên xwe de bi zimanê xwe xutbe dixwînin û weazan didin û Îsraîl ereban mecbûrî leşkeriya xwe nekiriye. Lê dewleta tirk, zimanê kurdan qedexe kiriye û mela li mizgeftan heqeret li kurdan dikin"

## 'Peywira DAIŞ'ê qediya'

Siyasetzan Hüseyin Şeyhanlıoğlu jî peywir û sosyolojiya DAIŞ'ê nirxand û got ku tu pêwendiya hişmendî û kiryarên DAIŞ'ê bi îslam û çanda Rojhilata Navîn re tune ye û DAIŞ bo armancên siyasî ji aliyê Îngilîstan, Îsraîl û Îranê ve hatiye dameziran-din. Şeyhanlıoğlu destnîşankir ku rojavayî yên ku van demên dawîn, kiryarên hovane ên DAIŞ'ê tînin ziman, ji mêj ve ji kiryarên DAIŞ'ê haydar bûne û niha xuya dibe ku kar û peywira DAIŞ'ê qediya ye û wiha domand; "Ne tenê jin, ezdî û kurd; DAIŞ'ê êrîşî erebên sunî jî kiriye. Wek nimûne; Ji hoza Şammarê 750 nefer hatin şerjêkirin. Rojanameya New York Timesê di salên 1995 û 97'an de nûçeyên wiha ji bo Talîbanê çêdikir; Lê belê piştî ku Talîban, li dij berjewendiyên Emerîka û rojava tevgeriya dest bi nûçeyên wiha kir. Niha jî heman tiştî dike. Ez di navbera salên 2013 û 14'an de li ser DAIŞ'ê xebitîm û min dît ku laboratuwarên kompîturan ên DAIŞ'ê ku danegehên wan li rojava ye hene ku ji hêla rojavayiyan ve hatine damezirandin û ji wir, propagandaya xwe dikin. Li ser Facebook, Youtube û medyaya civakî propagandaya xwe dikin û kes jî tora wan qut nake." Şeyhanlıoğlu bale kişand ku di her şerî de destdirêjî wek çekê li hemberî jinan tê bikaranîn, da zanîn ku di şerê Balkanan de ji bi sed hezaran jinên Boşnak rastî destdirêjiyê hatine. Şeyhanoğlu got; "Rojavayî ji mêj ve ji DAIŞ'ê haydar bûn, lê belê niha daneyên kiryarên wê yên qirêt tînin ziman. Xizmeta tiştekî dikin û diyar e ku wekî Talîban peywira DAIŞ'ê jî li cem rojavayiyan qediya ye û hewldana jiholêrakirina DAIŞ'ê destpê kiriye, lê belê bi vê hilkeftê, bi ser navê mafên mirovan û yên jin û zarokan, hemû Rojhilata Navîn û misilman têne reşkirin"

## 'Bingeha DAIŞ'ê hatibû amadekirin'

Li ser pirsa 'DAIŞ'ê, çawa bi van kiryarên qirêt di nav suneyan de cih girt?' jî Şeyhanlıoğlu anî ziman ku DAIŞ, ne ji misilmanan, ji kesên bêxwedî şervanan peyda dike û angaşt ku bingeha sosyolojîk a bicihbûna DAIŞ'ê ji alî muhaberata Sûriye'yê û îstîxbarata Îranê ve di nav 12 salan de hatiye avakirin û bi valahiya rêvebiriyê re DAIŞ bi hêsanî li Iraq û Sûriye'yê bi cih bûye. Şeyhanlıoğlu wiha domkir; "Ev yek plankirî bû û hozên ereb jî ji ber vê valahiyê piştgirî dan DAIŞ'ê. Li Bakur kurd birêxistinbûn û li Başûr jî şîa birêxistin bûn. Van hozan jî xwe sipartin DAIŞ'ê. Bi sedan derûdorên îslamî bang kirin ku DAIŞ tevgereke îslamî nîne û mişrîk e. DAIŞ jinên dîl difiroşe û vê yekê dispêre çanda xeza ya îslamê. Lê di rastiyê de di vê çandê de tu kes nikare dest biavêje jin, zarok û pîr û kalan. Tu daneyên ku pêkanînên DAIŞ'ê bispêrin îslamê û çanda Rojhilata Navîn tune ne; Lewre ger ku bi berfirehî bê nêrîn, DAIŞ mirovên belengaz dikuje. Ev tiştekî asayî ye, lewre ji bilî spartina îslamê tu daneyên wan ên ku xwe bispêrinê tune ne û argumanên wan ên ku herî zêde bikar tînin jî agahî û zanînên îslamî ne"

Barış Güler:

# Zonê însanî raya însanî ya

Ali Aydın Çiçek

**Ma bi xeyr dî birêz Bariş Guler, ti şikîna bi kilmekî xo bidî naskerdiş?**

Xêr bi silamet bira Alî, ez serra 1978 de, Gimgim de, dewa Gulika Verojî (Taşlıyayla) de ama dinya. Mi ortaokul heyan sinifa diyine Gimgim de wend. Ez hîna des û çar serrî bîya ma dewe caverde. Serra 1993 de ma dewe ra bar kerd şîme Terkîrdag. Yanî ortam rind nêbî, kar-gure çîne bî, ma mecbur bar kerd. Nêzdîyê vîst serrî ma Terkîrdag de mendîme. Uşka zî ez nêşîkîyo biwanî. Xora şopê şîya mektebe, menda û dima mi mektebe serheb caverde.

**Ti çi waxt ra nat muzîk de eleqadar bena?**

Nêzdîyê des serrî yo ke ez muzîk de eleqedar bena. Wexto ke ez esker ra ama ma Çerkezkoy (Tekirdag) de jû dernek kerd ya: Pîr Sultan Abdal Kultur Dernegî. Uşka ez des serrî xebetîya. Dernek de ma tîyatro, sema, muzîk û folklor viraştêne. O waxt mi kî dest kerd ci muzikî ser o xebete kerde. Ma jû grûbe saz kerde. Namê grûbe "Grûb Dem" bî. Grûb Dem de, hevalan de ma di serrî xebetîyayme. Dima tayê hevalî şîy esker, tayê zewejîyay, tayê jî şîy Almanya. Yanî grûbe bîye vila, ez teyna mendo. Bado mi xeylê waxt teyna hênî amator muzîk viraşt. Tabî ma ê roja jî vatêne "ma seba zonê xo se bikerîme". O taw seba albumî xeylê bestê mi zî hazir bî. Mi rojê maya xo ra vat "Dayê, ez şona Îstanbul album vejena." Maya mi û çê ma nêwaşt ez bêrî Îstanbul. Feqet bado maya mi qayt kerd ke verê mi nêcêna aye bi xo bawula mi kerde hazir. Ez vecîya ama Îstanbul. Ama Îstanbul karê tekstîl ra bicê zaf kara de xebetîya. Yanî hetê ra xebetîya hetê ra zî mi albumê xo viraşt.




**Hunermendê ma yê ke kirmanckî (zazakî) muzîk virazenê, ti înan senî vînena û reyna mabênê înan ra pê kamcîn qayîl bena? En zaf kamcî hunermendî na raye de to ser o tesîr kerdo?**

Zemanê, siro ke ma dewe de bîme, waxto ke cereyan şîyêne, may û pîyê mi dest kerdêne ci ma rê kilamî vatêne. Qe dore nêdêne ma; jûye pîyê mi vatêne jûye maya mi vatêne. Yanî ez tayê jî uşka ra vecîya raye. Tewr verên de tesîrê dîna (înan) mi ser zaf o. Zobîna Yilmaz Çelîk, Şîvan Perwer. Reyna Mîkaîl Aslan, Ahmet Aslan, Metîn-Kemal Kahraman. Hama nika Ahmet Aslan seba mi cayêde bîn de vindeno.

**Nameyê albumê to "Vengê Hardê Ma" yo. To çinayî ra nameyê albumî "Vengê Hardê Ma" na pira?**

Ma ke xo ra pey nîyabidîme ma vînenîme ke miletê ma ha wo hîris serrî ra zêde yo ke bedel dano. Yanî seba zonê xo, kulturê xo, seba hard û raya xo... Yanî zaf bedelo giran da. Ma nika qutîye (neynike) de qaytê xo kenîme vanîme ma seba zonê xo se kerd? Para ma rê çi kewto? Hetê xo ra mi waşt ke wa no album vengê welatî bo, vengê ê hardî bo. Yanî ma rêça xo, welatê xo xo vîr ra mekerîme. Coka...

**Ma ke albumê to de nîyada, hawt kilamî û jû kî şîîre ca gureto. Nê kilamî, şîîre û muzîkê nînan aîdê to yê. Na rewşe (hal) , eynî zeman de dewlemendîya hunermedî zî musnena ma. To nê besteyî û mûzîkê înan bi senî hîsan viraşt?**

Zonê ma zaf qiymetlî yo, zaf rindek o. Ez ke beste virazena qaytê xo ra pey keno, qaytê domantîya xo keno. Yanî hesreta domantîye, hesreta ê caya, ê însana...Yanî tesîrê nê cuya mi û besteyanê mi ser o zaf o.

**Albumê to "Vengê Hardê Ma" eleqeyê ke ti pawena, dî?**

Wile bira milet, ya jî ma vacîme nas û dost zaf pê qayîl beno. Yanî tepkî zaf rind o, her kes zaf desteklemîş keno. Cayêde etkînlîk, çîyê bibo venga ma danê. Hama teyna nas û dost bes nîyo, gereke miletê ma kulî nê eseranê ma rê wayîr bivejîyo, çunke ma seba miletê xo virazenîme.

**Tarzê muzîkê to çik o?**

Tarzê muzîkê mi taybet (özgün) o.

**Ti kamcîn estrumantanê muzîkî cinena?**

Ez teyna tambur cinena.

**Babeta ma herçiqas muzîki ser o bo zi ez wazena ke derheqe zonî de zî jû perse pers bikerî. Ti rewşa kirmanckî senî vînena? Mesela, ewro her kes rind zaneno ke kirmanckî sînorê vîndîbîyayene der a. Ti na babete de senî fikirîyena?**

Zonê însanî raya însanî ya. Gencê ma nika nîşkînê qese bikerê, zon xo vîr ra kerdo. Êyê ke metropol der ê, ê tewr qese nikenê, kulî tirkî qese kenê. Naye de xetaya pîlanê ma zî zaf a. Çunke ma vanîme, şima qey zonê xo nêmusnenê domananê xo? Vanê, îndî çax degiş bîyo. No fikir şaş o! Xora dewlete zerar do zonê ma, o ke mendo şima mekişê. Jû zon jû însan o. Ma wazenîme ke no welat de ma zî zonê xo de egîtîm bikerîme, zonê xo rehet qese bikerîme. Kursa bikerîme ra. Yanî îş ma de xelesîno. Gereke ma her ca de, çê de, mektebe de, kar de zonê xo qese bikerîme. Jûmîn de yardim bikerîme. Ancax ma nîya şîkînîme seba zonê xo çîyê bikerîme. Zobîn kes nîno çîyê nêdano ma.

**Bê muzîkî ti çînayî de eleleqadar bena?**

Ez emekçî yo. Yanî pê mi de sponsor, kes çîn o. Ez hem xebetîya hem jî mi albumê xo viraşt. Yanî ez tesktîl de xebetîya. Poxê muzîkî ra mi karê tekstîlî caverda feqet nika reyna kar ra fetelîna.

Naye ra dime ti derheqê muzîk û ziwanî de çi fikirîyena yanî dima nê albumî çi projeyê to estê.

Heya estê. Belkî nika rew o, feqet ez wazena ke zonê ma de çend fîlmanê kilman virazî. Reyna zonê ma de tayê besteyê min ê bînî estê, eke nesîb bo, jû albumode bîn.

**No roportaj verî "Newepel, Rojnameyê kulturî, Hûmare 73, Dîyarbekir, Adare 2015, r. 4" de, dima keyepelêwww.zazaki.net de weşanîyayo. Ma bi desturê edîtorê Newepelî uca ra neql kerd.*



# Bîranînên dîrokî û rûpelên xemgîn

Gabar Çiyan

Min, pirtûkek wiha bi dilê xwe, bi zimanek kêşar, mijarek balkêş, ji awira dîrokî ve bi nirx û bi agehdariyên berfireh barkirî, demek e nexwendibû. Kitêba "DU PISMAM" bi hewara min ve hat. Xwendina pirtûka 298 rûpelî sê rojan dom kir. Her beş ji ya din bi heyecantir û rengîntir bû. Ev yek hetanî pela dawiyê domiya.

Mamosteyê zimanê Kurdî, nivîskar û helbestvan Felemez Akad di vê berhema xwe de, bîranînên xwe dinîvisîne. Beşek baş ji pirtûkê, xatiratên wî û pismamê wî yê "dilpak û dilsoz" Ali Akdogan jî hemêz dike.

Pêşketinên îro û nirxên bidestketî di rojekî de nehatine pê. Di qonaxên dîrokî de xebat hatine kirin. Gelek kesan ked dane. Ketine zindanê, îşkence dîtine. Canê xwe feda kirine û ava şehadetê vexwarine. Xebatên li ser ziman, çand, dîrokê ji xwe re kirine karên esasî û berhemên giranbuha hiştine. Beşek ji serkevtin û bidestxistinên îro, bi saya mîrasa duhî ye. Divê, xwêdan û keda wan neyê jibîrkirin. Di vê çarçoveyê de berhema "DU PISMAM" bi nirx e û valabûnekê dadigre. Nivîskar bi xwe, ku şahidek ji yê wê demê, aktorek ji hêzekî siyasî û welatperwerekî Kurd lê mahkûmê dewlêtê ye, bi riya bîranînên xwe rewşa bakurê welêt di salên 60-80 ji hêla aborî, civakî û siyasî ve jî ronî dike. Çend rûpelên giring ji dîroka gelê Kurd, bi taybetî ya herêma Mêrdînê bi teknîka dokumenterî pêşkêşî xwendevanan dike. Mirov, bi saya berhemê, hêz, çalakvan û têkoşerên qonaxekî nas dike. Daxwazî, program, demokrasiya nav hêzan, nêzîkbûna xelkê û dewletê li wan, bi îro re muqayese dike.

Berhemên wisa mecalê dide lêkolînêran ku ji gelek awiran li ser civata xwe kur û hur bibin, baştir nas bikin û perspektîvên nû pêşkêş bikin. Bê guman e ku, nivîskar ne bê alî ye. Çalakvan û endamê navendî yê hêzek netewî ye. Lê di rexnekirin û gazinên xwe de, formek erênî bikar tîne. Li gorî pîvana exlaq û normên rexnegiriya polîtîk, xwe ji spekulasyonan dûr digire, rexneyên wî li hêz û kesên siyasî dostanî ye. Neyarên gelê Kurd, dewletên dagîrkêr weke sucdarên herî mezin nîşan dide.






**Mirov dikare xatiratên nivîskarî di bin şeş niqteyan de analîz bike:**

**Jiyana li gund**

Weke ku tê zanîn herêma Omeriya Mêrdînê ji aliyê şiyarbûn û piştgiriya têkoşîna netewî rolekî erênî lîstiye û dilîze. Lewra naskirina devera Omeriya û dîroka rêvebiriya wê pir giring e. Di xebata Akad de, agehdariyên pêwîst li ser herêmê û eşîra rêvebir heye: Serokên eşîrê, şêweyê rêvebiriyê, polîtîka dewletê li dijî dever û eşîrê. Dubendiya di nav eşîretan û rola dewletê. Rewşa aboriyê li gundan, têkiliyên aborî di nav wan de. Nakokî û rêyên çareseriyê. Û jiyana çandî.

**Barkirina nivîskarî ji gund û bicîhbûna li Nisêbînê**

Nisêbîn li ser sînorê bakur, rojava û nêzî başûrê welêt e. Kaniya welatperweran e. Di gelek qonaxên cewaz de û demên xeter dihate bi ser Kurdên polîtîk de, xelkê deriyê xwe ji welatperweran re vekirî ne. Nanê xwe bi wan re parvekirine. Derdê hev kişandine. Gelek kes, derbasî binya xetê kirine. Bajar, xwedî dîrokek kevnare ye. Ji aliyê netewî ve şiyar e. Ji hêla polîtîk û aborî ve rola xwe mezin e.

Berhema nivîskar, balê dide ser dîroka bajêr û qonaxekî pir giring şirove dike. Bi taybetî cî û giringiya bajêr ji awira dîrokî û siyasî. Nisêbîna kevin. Rewşa wê ya civakî û aborî. Eşîr, bavik û şexsiyetên li bajêr. Nakokiya di nav bajarî û gundiyan de. Berxwedana bajariyên nû (gundiyên li bajêr bi cî dibûn) li dijî bajariyên eslî (kevin), hemêz dike. Her wisa, şiyarbûna ciwanên Kurd û xebata siyasî, nakokiyên nav eşîr û hêzên siyasî û sedemên wê jî dibe mijara vî beşî.

**Xebata siyasî**

Destpêkirina nivîskar bi siyasetê. Dijwariyên li pêşiya siyasetvanên ciwan. Xebat û berxwedana bi israr bala mirovî dikşîne. Nivîskar, di beşên pirtûkê de agehdariyên giring li ser mijarê dide:

Di salên 60-80 rewşa siyasî li bakur, başûr û rojavayê welêt. Mecalên kar û xebatê. Têkiliyê wan bi hev re. Weke partiyek ji yê pêşî, xebata PDKT ê li bakurê welêt, bi taybetî herêma Mêrdînê. Rêvebirên wê, şiklê rêvebirinê, program, kongre û biryarên PDKT ê. Nakokiya berî 12 îlona 1980 di nava hêzên Kurda de û sedemên wê. Têkiliya nivîskarî bi şexsiyetên civakî û siyasî.

**Xwendina dibistanê**

Nivîskar qala xwendina xwe ya destpêkê, navîn û bilind dike û lê mirov bi giştî li ser rewş û mecalên perwerdekirina zarokan li gunda. Dijwariyên li pêşiya xwendevanên welatparêz li bajaran. Dijîtiya dewletê û hêzên turk li hemberî xwendevanên Kurd li zanîngehên Turkiyê. Helwêst û çalakiyên xwendevanên Kurd li dijî wan. Xebata ciwanên Kurd ji bo Kurd û Kurdistanê, dibe xwedî dîtin.

**Hatina cunta 1980 î. Rewşa girtîgeha Nisêbîn û Mêrdînê. Zilma li zindana Amedê**

Bi hatina 12 îlonê re, ji helekî hêzên dewletê, polîs û arteş, ji aliyê din hêzên reş ku dewletê îdare dikin, bi şêwirmedên taybetî li bajaran bi cî bûn. Li hemû deveran girtin û îşkencekirina bêhiqûqî bû karê rojane. Di girtîgeh û zindanan de îşkence bi formên nû û hovane hate bikaranîn. Şexsiyeta Kurd, nasname û zimanê wî hedef hatibûn girtin. Ji bo nirxên Kurdewarî bê hilweşandin çi pêwîst be, hate kirin. Xatiratên nivîskar li ser wê demê, beşek zilmê eşkere dike.

**Derketina derveyî welêt û xebata li wir**

Piştî 12 îlonê zilm û taqîbata dewletê li dijî welatperweran, ne tenê li girtîgeh û zindanan, lê belê li derve jî bi şêweyê tehdît, talankirin, girtin û kûştinê didomiya. Nivîskar, mîna gelek kesên welatperwer, piştî dadgehkirina wî li Amed û berdana wî, ji taqîbat û tehdîta dewletê rizgar nabe. Mecbûr dibe ku derkeve derveyî welêt. Tê Swêd.

Li Swêdê jî xebata xwe di komelên demokratîk de didomîne. Di nava Partiya Sosyal Demokratên Swêdê de cî digire. Li belediya Uppsalayê de dibe xwedî meqam. Û ji bo parastina mafê Kurda dixebite û biryarên baş dide derxistin.

**Encam**

Pirtûk di 2012 de li çapxaneya APEC ê ketiye ber çapê û belav bûye. Berhem bi kurdî hatiye nivîsîn, ji 27 beşan pêk tê û ji bo kesên bi siyaset û dîrokê dadikevin çavkaniyek giranbuha ye. Bîranîn, bi zimanek bilind û forma dokumentasyonekî dîrokî hatiye amadekirin. Ne tenê ji awira polîtîk, lê belê ji aliyê çandî, civakî û aborî ve jî gelek agehdariyên giring hemêz dike. Navnîşana têkiliyê ji bo destxistina pirtûkê ev e: felemezakad@spray.se.

## Serdar Karatay

# Nîgarsazê pêşengên kurd

**Mehmet Emîn Kan**

Nîgarsazî li hember desthilatdariya şerî, li Kurdistanê gelek hunermendên ku li hemberî desthilatdariyê bi hunera xwe radiwestin û wek helbesteke nû hunerên xwe derdixin pêş hene. Nîgarsaz Serdar Karatay jî yek ji wan hunermendan e. Karatay'ê 26 salî ku bi regeza xwe ereb e, li Mêrdînê gelek tabloyên kesayetên ku di doza Kurdistanê de bûne sembol çêdike. Me daxwaza hevpeyvînê jê kir û wî daxwaza me erê kir û ji me re qala huner û jiyana xwe kir.

**Nîgarsazekî ereb û dostê kurd**

Nigarsazê ciwan Serdar Karatay di derbarê destpêka çêkirina wêneyan de got ku, ''Ez bi eslê xwe ji navçeya Mêrdîn,Qoserê me û ez Erebê Sellaxê me, di nav jiyana min de cihê hunerê pir biqiymet e û navenda jiyana min huner e. Dema ku ez biçûk bûm min wek hemû zarokan her dem karakterên xêzefîlman xêz dikirin, ew dem min hêdî hêdî pêpelokên jiyana xwe bi rê ve dibir. Dema ku ez mezin dibûm felesefeya huner ji bo civakê ye di hişmendiya min de pêşve diçû. Dema ku min buyerên ku li der û dora min pêk dihatin, min dît û fahm kir ew dem zêdetir di aliyê çêkirina wêneyan de zelal bûm. Dema ku min lîse qedand û di sala 2011an de min zanîngeha Yüzüncü Yıla Wanê beşa Mamostetiya Wêneyê qezanc kir ew dem wek akademîk min dest bi hunera xwe kir.”

**Nîgarsazî haydarkirin e**

Karatay'ê Kurdistanî, her çiqas wek regez ereb be jî zordestiya li kurdan tê kirin dîtiye û ji bo nifşên nû ji vê zortestiyê haydar bike tabloyan ristiye. Karatay got: “Ez ji qirkirina ku tê meşandin haydar im û dixwazim haya nifşên nû jî jê hebe. Lê nifşên nû ji wan qirkirinan haydar nîn in û ez pê xemgîn dibim. Tu gel bi qasî kurdan hatiye qetilkirin û koçberkirin. Min jî wek nîgarsazekî Kurdistanî peywirek da pêş xwe ku ez vê sosretê bi tualên xwe ji nifşê nû re vebêjim da ku nîfşên nû ji wan haydar bin. Ez zanim ku gelên ku dîroka xwe nizanibin ew ê her dem erdnîgariya wan di bin destê dagirkeran de be. Ji wê sedemê jî dive em dîroka xwe zanibin.”

**Hunermend divê neheqiyan bîne ziman**

Nîgarsaz Serdar Karatay astengiyên ku ji hunermendên kurd re derdikevin û wan hê zêde bi doza kurd û Kurdistanê ve girê didin wisa şîrove kir: ''Cihekî ku neheqî li wê derê hebe divê hunermend her dem vê neheqiyê bîne ziman. Muzîkjen bi stranên xwe,peykersaz bi peykerên xwe, nîgarsaz jî bi wêneyên xwe di hunera xwe de cih bidin van neheqiyan. Gelê Kurdîstanê gelek êş û elem dîtin,zilm û zordariyan hê jî dibinîn. Aniha xebateke min li ser zilm û zordariya desthilatdarên ku Kurdistanê talan dikin heye. Kurdan tu caran azadiya ku desthilatdar ji wan re daye nedîtiye û nejiyaye.” Karatay da zanîn ku li zanîngehê dema ku pêşengehê vekir ji bona ku wî kesayetê kurd û ala Kurdistanê di tabloye xwe de bi kar aniye rastî tengasîya hatiye û got ,”Min bixwe jî ev rewş jiya. Mînak, di serê vê salê de li zanîngeha Yüzüncü Yıla Wanê pêşangeheke min çêbû û di wê pêşengeha min de bi piranî tabloyên kurdên bi nav û deng û bûyerên ku li Kurdistanê qewimîn bûn. Dema ku min tabloyên xwe rêz dikir mamosteyekî me dema ku tabloyê min dît bertek nîşanî min da. Ji min re got “Ev der Dewleta Tirkiyeyê ye, ez nahêlim tu van tabloyan li vê derê daleqînî. Min ev beş vekir, ez nahêlim tu wêneya vî parçekirê xayînê welat Saîdê Nursî Bedîûzzaman daleqînî. Ez nahêlim tu wêneya Ajanê Mossadê Mustafa Barzanî daleqînî û di wan tabloyan de ala wan parçekira xayîna heye ez nahêlim tû wana daleqînî. '' û gelek heqeratên din kir. Lijneya zanîngehê civîyan û biryara tabloyên ku min amade kiribû û di pêşengeha xwe de min ê pêşandan bikira top bikin girtin. Li gor wan min tabloyên ku çêdikir li gor nirxên vî welatî nîn bûn. Ew roj min ji xwe re soz da ku heta ez hemû buyerên ku li Kurdistanê çêdibin û çiqas kesayetên girîng hebin ez wan li ser tualê xwe xêz nekim ez wê firçê ji destê xwe danaynim.”



**Pêşangeha rengên Kurdistanê**

Karatay dibêje ku nirxên vê erdingariyê ji bona wî girîng in û aniha xebatên wî yên bo vekirina pêşangaha Kurdistanê hene û got ,” Ez di berhemên xwe de bi gelemperî nirxên vê erdnîgariyê di pêş de digirim.





Ez dixwazim di demekî nêz de bi navê Rengê Kurdistanê pêşangehekê vekim. Di wê pêşangehê de ji çar perçeyên Kurdistanê jiyan û nîrxan ez ê li ser tabloyên xwe bînim ziman. Aniha li ser wê xebatan dikim. Lewra ez aniha ku dikarim zimanê dayîka xwe erebî bi rihetî biaxifim ev sedema bedelên ku kurdan dayê ye û ez zimanê dayîka xwe ku aniha kêm diaxifim, sedema wî jî qedexeyên dewletê ne. Li aliyekî qedexe li aliyê din jî gelekî ku min bi her awayî qebûl dike hene. Ji wê sedemê aniha armanca min a sereke ku ez pêşangeha Kurdistanê vekirine. Ez çiqas xebatan bikim jî nikarim heqê birayê xwe ye kurd bidim wan.”

**Spî, şîn û sor rengên kurdî ne**

Di berdewama axaftina xwe de derbarê rengan de Karatay got ku ,”Bi rengan re ahenga min wek tevahî nigarsaza pir baş e. Ez ji sê rengên esasî kijan rengên ku ez bixwazim dikarim derxim holê û berhemên xwe amade dikim. Ew rewş ji min pir bextewar dike. Dema ku tabloya min diqede û ez lê dinêrim pir kêfxweş dibim. Ji wê sedemê reng navê din ê bextewariyê ne. Li gor min rengên kurdî hene, ew reng jî spî, şîn û sor in. Kurd di dirokê de her dem hatin qetilkirin, hatin talankirin ji wan re xwîn hat rewadîtin, vê rewşê herî baş sor tîne ziman. Her çiqas ku hat talankirin, hat koçberkirin her dem ku kurdan aşitî parast ji bona wî jî rengê spî baş tîne ziman. Aniha vî gelê ku biçûk tê dîtin, bila neyê jibîrkirin ku di dîrokê de gelek dewletan ava kiriyê, Selaheddînê Eyyûbî û gelek serokên kurdan ku dewlet ava kirine û alayên wan ên ku bilind bûne li asîmanan jî şîn bûne. Li gor min ji wê sedemê spî, şîn û sor rengên kurdî ne.”

**Bextewariya herî mezin azadiya Kurdistanê ye**

Di dawiya axaftina xwe de divêtiya helwesta nîgarsazan a ji bo azadiya Kurdistanê anî ziman û got: “Her nîgarsazên kurd dixwazin çand û hunera welatê xwe di berhemên xwe de binexşîne, lê ger alîkarî tune be, nikare wan berheman li cîhanê belav bike. Sedema herî mezin jî bêdewletbûn e. Niha dewleteke kurdan hebûya, wê kurd di her qadê de bihatina nasîn. Heta ji destê me bê, wek nîgarsazên Kurdistanê em ê vê yekê nîşan bidin. Niha başûr gav bi gav ber bi serxwebûnê ve diçe. Ez dixwazim ku di kurtedemekê de hemû kurd azad bibin û di bin ala Kurdistanê de bi aştî bijîn. Ji bo kurdan bextewariya herî mezin jiyana di bin ala kurdistanê de ye.” Di derbarê pêşxistina nîgarsaziya Kurdistanê de jî Karatay grîngiya hevgirtina nîgarsazên kurd destnîşan kir û got: “Divê saziyeke ku di bin banê wê de Yekîtiya Nîgarsazên Kurdistanê bê sazkirin hebe. Lewre hêza hunerê ji ya siyasetê bi tîntir e.”